Hejmar:9 Jul 2004'e Zayînî

# agiri

Gelawêja 1383'e Rojî

Rojnameyeke siyasî û çandî ye

Partiya Demokrata Kurdistana Îranê diweşîne

# Destve anîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îraneke Demokratîk ya Federalî de



Kongreya 13'emîn ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê ku di rojên 13 – 17'ê Pûşpera 1383'ê Rojî (3 – 8'ê Julaya 2004'ê Zayînî) de rêve çû, serbarê cî bi cî kirina komek ji erkên diyarî kirî, hin guhertin jî di pêrewa navxwe de pêk anîn. Yek ji girîngtirîn guhertinan di bernameyê de, guhartina dirûşma stiratijîk ya Partiyê ji **Demokrasî bo Îranê** û **Otonomî bo Kurdistanê** ve bo dirûşma **Destve anîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îraneke Demokratîk ya Federalî de** bû. Bi vê sedemê ser navê xebatkarên Agirî pîrozbahiyê ji hemû gelê Kurd û alîgirên çareser kirina pirsa neteweyî di Îranê de li ser bingeha Fedelarîzmê dikin.

**Birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, di rê û resma rêz girtin ji 15'mîn salvegera şehîd bûna Dr. Qasimloyê nemir de:**



Em jî vê rojê de di gel hemû xortên xebatkar û şoreşvan yên Îranê û bi xasmanî xelkê Kurdistana Îranê, peymanê nû dikin ku rêbaza Qasimlo rêbaza xebata me ye, siyasetên wî çirayê rêya tekoşîna me ye, rêyek ku niha zêdetir ji berê ronahî ketî yê û merem û armancên me ku azadiya gelên Îranê ku yek ji wan gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye, zêdetir ji hergav û rabihorî ron û berçav û aşkira ye

## Serdana şandeka bilind ya PDK Li Deftera Siyasî ya PDK Îranê



**Dirêjiya nûçeyê di rûpela 9'ê de bixwînin.**

# Rêveçûna sêzdemîn Kongreya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê


Dîmenek ji beşdarên Kongreya 13'mîn ya PDK Îranê

Demijmêr 9'ê pêşnîvroya roja şemî 13'ê Pûşpera 1383'e Rojî (03.07.2004), sêzdemîn Kongra Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê bi beşdariya nûnerên hilbijartî yên Partiyê û endamên rêberiya Partiyê li gor bernameya berê bi sirûda **Ey Reqîb** û ragehandina deqeyek bêdengî bo rêz girin ji bîranîna şehîdan dest pê kir. Piştî pêşkêş kirina gotara vekirina Kongreyê ji aliyê birêz Celîl Gadanî wekî kevnitirîn endamê Kongreyê, rapora Komîteya Amadekar ya Kongrê ji aliyê birêz Elî Mêhrperwer, endamê Deftera Siyasî ve hate pêşkêş kirin û meşruiyeta kongrê hate pesend kirin. Piştre birêz Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştî rapora siyasî ya Komîteya Nevendî pêşkêş kir. Ew rapore piştî çend civîn û basên berfireh bi piraniya dengan hate pesend kirin. Di beşekî din ya karê Kongreyê de bername û pêrewa navxwe ya partiyê kete ber lêkolînê û çend guhertin tê de pêk hatin.

Di pişka dawî ya karê kongreyê de hilbijartina endamên eslî û cihgirên Komîteya Navendî rêve çû. Di çaxê rêve çûna kar û barên kongreyê de hejmarek ji wan mesajên ku ji aliyê Partî û Rêxistin û kesayetî yên biyanî, Îranî û Kurdistanî ve bo kongrê hatibûne şandin, hatin xwendin. Kongre demijmêr 8'ê êvariya roja çarşemî 17'ê Pûşperê (08.07.2004), dawî bi karên xwe anî.

Komîteya Navendî ya hilbijartî ya Kongreya sêzdê di civîneke kurt ya xwe de hevalê xebatkar, **Mistefa Hicrî** wekî Sekreterê Giştî yê Partiyê hilbijart û ew hilbijartine ji aliyê birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştî yê berê bo beşdarên kongreyê hate ragehandin û bi germî pîrozbahî ji Sekreterê nû yê partiyê kir.

## Daxuyanî

# Bi hinceta rêveçûna serkevtinane ya Kongreya sêzdehem ya Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê

*Hevwelatî yên birêz!*

*Civatên xelkê xebatkar yên Kurdistanê!*

*Dost, alîgir û endamên PDK Îranê!*

Bo Komîteya Navendî ya PDK Îranê cihê keyfxweşî û serfiraziyê ye ku rabigehîne: Sêzdemîn Kongreya Partiyê, pêşnîvroya roja 13'ê Pûşpera 1383'e Rojî, hemberî 3'ê Julaya 2004'ê Zayînî, dest bi kar kir û piştî 5 rojan karê berdewam, êvariya roja çerşemî 17'ê Pûşperê, bi serkevtin ve dawî bi karên xwe anî.

Kongre demjimêr 9'ê pêşnîvro ya roja şemî 13'ê Pûşperê, bi sirûda neteweyî ya **Ey Reqîb** û piştî ragehandina deqeyek bêdengî bo rêz girtin ji şehîdên rêya azadiyê, bi taybetî şehîdên navbera kongreya dazde û sêzde ya Partiyê dest pê bû, birêz Celîl Gadanî, wekî kevinartirîn endamê Kongrê gotara vekirina kongrê pêşkêş kir. Piştî pêşkêş kirina gotara vekirina kongrê, hevalê birêz Elî Mêhrperwer endamê Deftera Siyasî, rapora Komîteya Amadekar ya kongrê pêşkêş kir û bernameya karê kongrê ragehand.

Piştî pejirandina bername û ragehandina meşruiyeta kongrê, hevalê xebatkar Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştî yê Partiyê, rapora Komîteya Navendî pêşkêş kir. Di wê raporê de rewşa navneteweyî di dehsalên dawî yên sedsala bîstan de û ev guhertinên ku bûne sedema guhartina rûmeta siyasî ya cîhanê û herwiha ew rêzbendiyên aborî û bazirganî ku hemberî Amerîka pêk hatibûn, îşare pê hatiye kirin. Di vê raporê de bi hûrî pirsa terorîzmê û xurt bûna wê ketiye ber bas û encam û paşencamên wê jî hatine şirove kirin û li ser terorîzma Komara Îslamî ya Îranê û pirsgirêkên ser rêya xebat dijî terorîzmê tekez hatiye kirin û rêyên jêhat bo xebat dijî wê diyardeya mirar ji dîtingeha Partiya Demokrat




ve hatiye destnîşan kirin.

Piştî wê rapor diçe ser lihevdana rewşa giştî ya devera Rojhilata Navîn. Di wê beşa raporê de pirsên girîng yên deverê wekî: Pirsa Filistîn û pirsgirêka Îsrayîl û Ereban îşare pê hatiye kirin û li ser natebahî û hevrikî yên deverê tekez hatiye kirin û rêyên çareserî ya pirsgirêkan hatiye destnîşan kirin. Her di wê beşê de guhartinên dever û bûyerên Efxanistan û Îraq û pêşeroja wan bi ronî ketine ber bas. →

Daxuyanî

## Bi hinceta rêveçûna serkevtinane ya Kongreya sêzdehem ya Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê

***Dom: R. 2***

Pareke din ji rapora Komîteya Navendî bo bas li ser **Rojhilata Navîn ya Mezin** hatibû terxan kirin ku têde komek pirsên pêwendîdar yên vê basê hatine şirove kirin.

Di lihevdana rewşa Îranê de, rapora Komîteya Nevendî di dirêjiya kiryarên serkût û bin pê kirina Maf û azadî yên xelkê Îranê ji aliyê rejîma Komara Îslamî ve ji aliyekê û nemana tirs û sama xelkê ji rejîmê û rabûna şik û gumanê ji beşekî here zor ya xelkê welatê me, di îmkana guhartin di navxwe ya rejîmê de bi taybetî û yekdest bûna nîzamê piştî hilbijartina Meclîsa Heftem, nas kirina zaftir ya naveroka rejîmê li hundir û derveyî welêt û herwiha hewlên rejîmê bo bi dest anîna çekên etomî, bi dirêjî hatin şirove kirin.

Nirxandina Rewşa Opozîsyona Îranê û hêzên siyasî beşekî din ya rapora Komîteya Navendî bo kongreya sêzdem ya partiyê pêk tîne, di wê çarçoveyê de xalên lawaz û bihêz yên Opozîsyonê û erk û wezîfeyên wan yên niha îşare pê hatiye kirin.

Rapora Komîteya Navendî, girîngiyekî tewaw bi pirsa Kurd dayî ye û îşare bi wê kirî ye ku xebata Kurdan di çarçoveya teng ya welatên ku Kurd têde dirûnên, derbas bûye û bi kiryar bûye pirsa parek ji rûniştvanên zaf ji welatên pêşketî yên pîşeyî (senetî) nemaze li Emerîka, Ewropa, Kanada û Ustraliya, herwiha di wê pêwendiyê de rewşa Kurdistana Îraqê bi dirêjî bas lê hatiye kirin û îşare bi zêde bûna hişyarî ya neteweyî di hemû parên Kurdistanê de hatiye kirin.

Rapora Komîteya Navendî di pêwendî tevî Kurdistana Îranê de, tilî li ser rewşa ne baş ya jiyana xelkê û bêkarî û nedarî û li paşverû hêlana Kurdistanê dana ye û rola tevgera Kurdî destnîşan kirî ye, bi qedr û rêz li tevgera wêjeyî – çandî ya Kurdistanê nihêrî ye û nexşê rewşenbîrên Kurd bilind nirxandî ye, hevrikî ya xelkê digel dîktatorî ya olî bi nimûne dana ye.

Di pêwendî tevî Partiya Demokrat de, rapora Komîteya navendî îşare bi xebata nêzîk bi 60 salî ya wê hizbê û nifûz û helwêstên wê kirî ne û erkên wê partiyê destnîşan kirî ye û helwêsta partiyê li hemberî kurdên beşên din yên Kurdistanê û Rêxistinên siyasî yên wan ron kirî ye û Federalîzmê bi baştirîn metod bo çareser kirina pirsgirêka neteweyî di çarçoveya Îranê de zanî ye.

Di beşekî din ya rapora Komîteya Navendî de bi awayekî taybetî li ser girîngîdan û çeleng kirina rolê Jinan di kar û têkoşîna partiyê û bi giştî di xebata rizgarîxwaz ya xelkê Kurdistanê de, hatiye sekinîn.

Rapora Komîteya Navendî di çend rûniştinên pişikdarên Kongreyê de bi berfirehî kete ber bas û gengeşe kirinê û bi piraniya dengan hate pesend kirin.

Di beşekî din ya karê Kongrê de, bername û pêrewa navxwe ketine ber bas û lêkolînê û çend guhartinên hewce têde hatine kirin ku guhartina berbiçav dirûşma stratijîk ya partiyê ye ku hetanî berî Kongreyê **Demokrasî bo Îranê** û **Otonomî bo Kurdistanê** bû, ku bû bi **Avakirina Sîstemekî Demokratîk ya Federalî di Îranê de û destve anîna mafên neteweyî bo gelê Kurd di Kurdistana Îranê**.

Di beşa dawî ya karê Kongreyê de endamên eslî û cihgir yên Komîteya Navendî hatin hilbijartin ku hetanî Kongreyeke din erkê rêvebirina partiyê dikeve ser milê wan.

Komîteya Navendî ya hilbijartî a Kongreya sêzdem ya Partiyê di civîneke kurt ya piştî hilbijartinê de, hevalê birêz û xebatkar Mistefa Hicrî wekî Sekreterê Giştî hilbijart û ew hilbijartine ji aliyê birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê pêşin yê Partiyê di rê û resmeke taybetî de bi agadariya beşdarên Kongrê gihîşt û bi germî pîrozbahî ji Sekreterê nû kir.

Kongreya Sêzdem ya Partiyê, êvariya roja çarşemî 17'ê Pûşperê (07.07.2004), dawî bi karên xwe anî.

Serkevtina Kongra sêzdem ya Partiyê ji civatên xelkê Kurdistanê, dost û alîgir û endamên Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê pîroz be.

**Komîteya Navendî ya Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê**
**18'ê Pûşpera 1383'ê Rojî 08.07.2004'ê Zayînî**



## Kurtiyek ji jiyan û xebata hevalê xebatkar, birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê

Sala 1324 (1945) li bajarê Nexedê ser bi Parêzgeha Azerbaycana Rojava ji dayik bûye.

Sala 1342 (1963) xwendina bilind ya xwe li "Danişseraya Kişawerzî" ya Urmiyê kuta kiriye û bo erkê mamsotatiya xwendingehê şandine bajarê Seqizê.

Sala 1347 (1968) vegeriya bajarê xwe Nexedê.

Sala 1349 (1970) xwendin di rişta ziman û wêjeya Farsî li Zanîngeha Tehranê dest pê kir û di sala 1352 (1973) piştî xilas kirina zandora Lîsansê di wê rişteyê de carekî din vegeriya bajarê Nexedê û di xwendingeh û danişsera ya wî bajarî mijûlê wane (ders) gotinê bû.

Di organîze kirina xwepêşandanên nêzîk salên 1357 (1979) ya xelkê bajarê Nexedê dijî rejîma Şa roleke berçav hebû.

Di hilbijartinên yekem gera Meclîsa Şêwra Îslamî bi nûnerê bajarên Nexede û Şinoyê xwe berendam kir û bi anîna pitir ji 90 ji sedê ya dengên xelkê wekî nûnerê wî bajarî hate hilbijartin, lê ew hilbijartine weke zaf hilbijartinên din yên bajarên Kurdistanê, ji aliyê rejîma taze bi deshilat gihîştî ya Komara Îslamî betal hate ragehandin.

Di sala 1358 (1980), di Kongreya çarem ya PDK Îranê weke endamê Komîteya Navendî hate hilbijartin û piştî çend mehan bû bi endamê Deftera Siaysî. Di wê demê hetanî şehîd bûna Dr. Qasimlo di 22'ê Pûşpera sala 1368 (1989) wek endamê Deftera Siyasî ya Partiyê xebat û tekoşîna xwe didomand.

Piştî şehîd bûna Dr. Qasimlo û diyarî kirina Dr. Sadiq Şerefkendî wek Sekreterê Giştî bo cihgirê Sekreteriyê hate hilbijartin.

Piştî şehîd bûna Dr. Sadiq Şerefkendî di sala 1371 (1992)'an de wek Sekreterê Giştî, yê PDK Îranê hate diyarî kirin û heta sala 1374 (1995), dema girtina Kongreya 10'em ya Partiyê ev erke rêve dibir.

Ji wê demê hetanî Kongreya 12'ê ya Partiyê di Sermaweza 1379 (2000)'an de wek Cihgirê Sekretêrê Giştî yê Partiyê û endamê Deftera Siaysî kar kirî ye.

# Daxuyaniya Kongra 13'ê ya PDK Îranê bo: Bizava şorişvan û pêkhatşikên ya xwandekaran

**Xwandekarên azadîxwaz û şorişvan!**
**Hevalên çepergirtî li zanîngehê dijî serberdahiya olî!**

Kongra 13'ê ya PDK Îranê, Partiya pêşeng ya xebata milî – demokratîk ya gelê Kurd, di çaxekê de ku gelên bêzarbûyî ji estem û dîktatorî ya olî bi ser welatê me de, bo derikandina nerazîbûna xwe seba 18'ê Pûşperê, salvegera kuştin û qir kirina xwendekarên xwe bi destê şevhebînkên helyayî di wilayeta nezaniyê de, berhev dikin. Wê roja ku sîstema paşverû û sedsala navîn ya Komara Îslamî di berçavê raya cîhanê de kete rikeberanê tevî zanist, azadî, çand û demokrasîxwazî ya xwendekarî, di heyamê bêtir ji nîv sede xebat dijî sîstema kevneperest ya zal bi ser welatê me de, dane selimandin ku bi hegera komek paramêtrên wekî hişyarî, giringî dan bi wateyên bilind yên mirovahiyê û bi mifah wergirtin ji hêz û qaweta xurt bûnê, xwediyê pitansiyêleke mezin bo şikandina berbenda siyasî û hetanî niha, bi terzekî derhest, piştevanê rastîn yê xebata gelên Îranê di seranserê welêt de bûn.

Deshilatperestên Komara Îslamî jî, her di destpêka deshilata reş ya xwe de gihîştibûne vê rastiyê ku dirûşm û girîngî ya bizava resen û radîkal ya xwendekaran, antîtêza sîstema kevneperest û azadîkuj ya vê rejîma serberdayî ye. Ku wisan bû, ev rejîme her ji yekem roja deshilata xwe ve hetanî îro, bi penah birin bo komek pîlanên ehrîmenî wek: Koditaya çandî, avakirina saziyên destçêkirî û danana komek fîltêrên îdolojîkî yên cur be cur, bi merema pêkhatiyeke paradoksîkal bi navê **Xwendekarên Misilman yên pêrewê rêya îmam**, hewl daye û dixebite ku bizava pêkhatşikên û radîkal ya xwendekaran ji sîkla guhartinên girîng yên çarenûssaz veresîne. Lê bûyerên wan çend salên dawî dane nîşandan ku ev pîlangêrane xêncî têkçûn û serşorî bo Komara Îslamî çi tiştekî din nebûye û pêşbîniyên rayedarên vê rejîmê nehatine cî bi cî kirin û encama van pîlanane jî çi qazancek bo rejîmê nebû ye.



Bi taybetî girîngiya vê bizava xebatkar ya xwandekaran, di vê çendê da bû ku ev bizave naveroka guhartinan nebûn û sinariyoya destçêkirî a rêformxwazên hikûmetê bi başî dane eyanê û bo raya giştî ya cîhanê da selimandin ku ew sinariyoya çi tiştek nine xincî fend û fêlek bo xapandina bîr û raya giştî ya cîhanê û ev rejîme bi neçarî ber bi aliyê nemanê ve diçe, xortên hişyar yên welatê me ku cesûrane hatine meydana xebatê, hetanî anîne serkar ya sîstemeke demokratîk û îroyî dest ji xebatê hilnagirin.

Her çiqas ku hemû ev destkevtane bihayeke zaf mîna di xwînê de sorbûna cihwarê zanistê û çandê û dagirtina hepsîxanan ji xortên xwendekar, jêre hatiye danê, lê ev rola girîng û qedersaz ya ku îro 18'ê Pûşperê mîna senbola serhildana gelên Îranê di seranserê welêt de bi dijî sîstema ehrîmenî ya Wilayeta Feqîh, zaf girîngtir ji wan fidakarî û azardananê ye.

Nûnerên beşdar di Kongreya 13'ê ya PDK Îranê, bi baldan bi rastiyên têkildar bi hundirê welêt û pêwendiyên zal yên navneteweyî bo careke din rola girîng û qedersaz ya xwedekarên şorişvan li xebat bo azadî û anîne sarkar ya sîstemeke demokratîk di Îranê de, şirove kirin û tewahiya pişikdaran li ser vê rastiya haşahilnegir pê çeqandin ku bizava pêkhatşikên ya xwendekaran paramêtrekî destpêkî bo gihîştin bi armancên hêvîxwaz yên xelkê welatê me ye.

Kongra 13'ê ya PDK Îranê bi nûneratî ji aliyê hemû xebatkarên bizava milî – demokratîk ya gelê Kurd ve, piştevaniya xwe ji bizava şorişvan ya xwendekaran di çepera berxwedanî ya zanîngehan de, radigehîne û tekezê li ser bihêz kirina vê çepera girîng diket û wan arxayîn diket ku ji hemû hêza siyasî, teblîxatî û dîplomatîk ya xwe bo piştevanî kirin ji vê bizava radîkal û hişyarane dê mifahê wergire û her dem wan bi hevçeper û hevxebatên xwe dizane.

Silav ji bizava pêkhatşikên ya xwandekarên xebatgêr yên welatê me!
Bihiloşe rejîma serberdayî û kevneperest ya Komara Îslamî!
Hevgirtî be hevahengî û hevxebatiya gelên Îranê bo anîne serkar ya sîstemeke demokratîk di Îranê de!

**Kongreya Sêzdem ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**17.04.1383'ê Rojî**
**07.07.2004'ê Zayînî**

# Rê û resmeke berfireh bo rêz giritn ji 15'mîn salvegera şehîd kirina Dr. Qasimlo û hevalên wî di binkeya Deftera Siyasî de

Bi hinceta rêz girtin ji bîranîna 15'mîn salvegera şehîd kirina Dr. Qasimlo, rêberê navdar û jêhatî yê tevgera Kurd di Kurdistana Îranê de û Sekreterê Giştî yê PDK Îranê tevî Ebdula Qadirîazer, Endamê Komîteya Navendî û Berpirsyarê Têkilî yên Partiyê li derveyî welêt demjimêr 7'ê êvarî ya roja duşemî 22'ê Pûşpera 1383'e Rojî (13.07.2004), rê û resmeke taybetî di binkeya Deftera Siyasî pêk hat.

Rê û resm bi sirûda **Ey Reqîb** û deqeyek bêdengî bo rêz girtin ji bîranîna ew şehîdên serbilind dest pê bû. Piştre Birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi wê hincetê gotarek pêşkêş kir. Kekê Mistefa di gotara xwe rêz ji kesayetî ya bilind û xizmetên Dr. Qasimloyê nemir bi tevgera Kurd û PDK Îranê girt. Deqa axavtina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di vê rûpela Agirî de dikeve ber çavê we xwendevanan.

Di vê rê û resmê de çend helbest û pexşan û hin bernameyên hunerî hatine pêşkêş kirin. Rê û resm demjimêr 8:30'ê êvarî bi dawî hat.

Hevalên xweştivî!

Xwûşk û birayên birêz!

Her wek hûn dizanin 15 sal berî niha, di rojeke wekî îro de, li bajarê Viyenê, di civîneкê de bi navê "muzakire" (gotûbêj)ê, rêberê zana û mamostayê mezin yê Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê, Dr. Qasimlo tevî birêz Ebdullah Qadirîazer, bi destê terorîstên Komara Îslamî ya Îranê hatine teror kirin. Dr. Qasimlo hilgirê peyama aştî û hevaltiyê bû, hilgirê peyama çareseriya aştîwazane ya pirsa Kurd û gelên din yên di Îranê de bû, çareseriyek ku dikarî welatê Îranê ber bi avedanî û xelkê Îranê jî ber bi rifah û xweşguzeranî û serbilindiyê bibe. Lê neyarên azadî û aştiyê ku çavnihêrî dikirin pirsa Kurd ji rêya aştîxwazane ve bihê çareser kirin, hilgirê wê peyamê teror kirin.

Mixabin ew armanca ku wan hilgirtibû, armanceke girîng bû, ew merem her wiha bi hilkevt nebû. Çunkî Dr. Qasimlo tenê Sekreterê Partiya Demokrat ya Kurdistan a Îranê nebû, ji ber ku ew rêberekî jêhat yê Îranê bû ku renge di sedsalên rabihorî de nimûneyên wekî wî kêm bibin. Dr. Qasimlo bi dîtin û ramanên ron û dûrendîş di gel komek çekçekûleyên xwînmij û xwînrêj de rû bi rû bû, du aliyên dijî hev, ew bi wê encama şaş gihîştibûn ku şehîd bûna Dr. Qasimlo dikare tevgera gelê Kurd di Kurdistana Îranê de bêhêz biket û ji nav bibe û herwiha Dr. Qasimlo weke tirs û xofekî mezin li ser rêya hevgirtin û yekîtiya gelên Îranê dizanîn, çunkî Dr. Qasimlo ji hemû kesayetiyekê zaftir cehd dida ku hêzên Opozîsyon yên Îranê ku di wî serdemî de Opozîsyoneke bihêz bû, dijî Komara Îslamî yekgirtî biket.

Eger em mêzeyî ji 15 salên derbasbûyî yên bizava xelkê Îranê û gelên Îranê dijî rejîma Komara Îslamî û rewş û zirofek ku Komara Îslamî di 15 salên rabihorî de tûş bûye, renge niha heqaniyet û rastiya xwastikên Dr. Qasimlo û



Partiya Demokrat ku daxwazeke aştîxwazane bû bo xelkê Îranê û cîhanê eyan bibe. Di wê heyamê de Komara Îslamî zor micidane dirêjî bi wê siyaseta kuştin û birînê ku pêş xwe girtiye û hetanî niha jî dom dike, dide. Wê siyasetê Îran kiriye bi Îraneke paşverû, Îraneke terorîstperwer, Îranek ku di nava cîhanê de weke hikûmeteki terorîstî nav û deng der kirî ye. Îranek ku di her cih û devereкê de aştî û biratî hebe, bo têkdan û maytêkirinê hewlê dide. Lê PDK Îranê, niha jî her li ser vê siyasetê diçe pêş ku Dr. Qasimlo bawerî pê hebû, siyaseta aştîxwazane û çareseriya pirsa Kurd û gelên din yên Îranê ji rêya gotûbêja aştîxwazane ve. Ev rêya berheq û dirust ya ku Partiya Demokrat di destpêkê de pêş xwe girtî ye, siyasetek nine ku bi teror kirina Dr. Qasimlo yan jî xebatkarên din yên gelê Kurd û PDK Îranê girîngî û bihagiraniya wê kêm bibe, ji ber ku berevajî, nemirovî û hovîtî ya Komara Îslamî di nava xelkê Îranê û gelên Îranê de zêdetir têxe ber çavan.

Siyaseta ku Partiya Demokrat li pêş xwe girtibû û Dr. Qasimlo jî alahilgirê wê bû, siyasetek bû ku daxwaza parve kirina deshilatê di nava gelên Îranê de dikir. Siyasetek ku dibû sedema wê ku gelên Îranê bi metodekî dilxwaz tevî Îranê de bimînin, Îranê bi welatê xwe bizanin, di parastin û avedan kirina wê de pişikdar bin, lê Komara Îslamî ewa ne dixwast, Komara Îslamî ya Îranê şer û kuştin, wêranî û kuştar bo xelkê Îranê bi diyarî anîbû, bi taybetî ku şehîd bûna Dr. Qasimlo hevdem tevî dawî bûna şerê 8 salî yê Îran û Îraqê bû, şerek ku Komara Îslamî têde bi mîlyonan kes ji ciwan, kal, jin û zarokên Îranê dane kuştin, bi sedan Milyar zirara madî gehande Îranê, lê dîsan jî ew hemû şer û wêranî û kuştinane çavên şerfiroşên Komara Îslamî tejî nedikir, ku eve jî di rewşekê de bû ku Xumêynî Cama Jehrê vexwaribû û di şerê Îran û Îraqê de şikest xwaribûn û amade bûn digel hikûmeta wî çaxî ya Îraqê de rûniştinan pêk bînin û dan û standinê bikin. Lê nûnerê gelekê ku xelkê Îranê û hevwelatiyê wan bû û dixwast ji rêya aştîxwazane ve pirsgirêkên xwe di gel Komara Îslamî de çareser bike, kuşt in. Ew siyaseta hetanî niha didome, ji wî çaxî ve hetanî niha bi sedan kes ji xelkê zana, şoreşvan û xebatkar yên Îranê û Kurdistanê ji rojnamevan û dadmend û parêzeran hatine kuştin û şehîd kirin û bi sedan kes jî di koncên girtîgehan de ne. Lê hemû ewane û nemaze zêdetir jî didomin, ne rêyek e ku qeyran û pirsên Komara Îslamî ku encama siyaseta wê ye, bikare çareser biket. Komara Îslamî bi sedema pêş girtina vê siyasetê, roj bo rojê pirsgirêkên hundirî kûrtir dike û ew siyaseta bûye sedema wê ku xelkê Îranê roj bo rojê zêdetir lê bêzar û dûr bin.

Ger serdemekê Komara Îslamî bi sedema wê ku nehatibû naskirin di nava piraniya xelkê Îranê de bi hikûmeteke xweştivî dihate naskirin, lê belê ji wî çaxî ve hetanî niha roj bo rojê ji radeya alîgirên vê rejîmê kêmtir dibin. Bi terzekê ku niha ewên ku hikûmeta Îslamî ava kirine û di damezrandina wê rejîmê de amadeyî xwe gorî kirinê bûn, niha ji vê rejîmê bêzar in û parekî zaf ji wan jî di kuncên girtîgehan de ne. Yanî vê rejîmê ne tenê rehm bi Dr. Qasimlo û Partiya Demokrat û rêberiya Opozîsyonên din yên Îranê ►

**Deqa axavtina Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, di rê û resma 15mîn salvegera şehîd kirina Dr. Qasimloyê nemir û hevalên wî**

***Dom: R. 5***

nekiriye, ji ber ku heta bi wan kesên ku hikûmeta wan jî damezirandine, rehm nekiriye û her kesek bi kêmtirîn dijberiyê dikeve ber şûra kerb û kîn ya Komara Îslamî.

Eva 15 sal e ku Dr. Qasimlo bi cismê xwe bi me re nine û Komara Îslamî ji me standî ye, lê ew siyasetên ku Dr. Qasimlo mêimar û hostayê darêtina wan bû, niha jî sîbera wan her li ser serê me ye. Niha jî Dr. Qasimlo bi rêbaz her serwer û mezinê me ye ku bê guman Komara Îslamî ji vê rastiyê baş dizane. Çunkî serbarê wê ku Komara Îslamî piştî Dr. Qasimlo, Dr. Seîd û dehan xebatkarên çeleng yên me şehîd kirine. Lê hêşta jî PDK Îranê her li ser pêyê xwe sekinî ye û niha jî her Partiya xweştivî ya civatên xelkê Kurdistanê û cihê hêviya xelkê Îranê ye. Lewma Komara Îslamî ya Îranê bi şehîd kirina Dr. Qasimlo û rêberên din yên Opozîsyona Îranê û xebatkarên Îranê tu destkevtek nebûye û domandina vê siyasetê jî çi deskevtên din nabin. Bi taybetî eger em mêze dikin niha di serdemê Informasiyon û têkiliyên xurt de, di serdemekê de ku mezintirîn pirsgirêkên navneteweyî bi gotûbêj û qal û gengeşê têne careser kirin, siyaseta tund û tîj ya Komara Îslamî, ne dikare xelkê Îranê "qani" û razî bike û ne jî dikare bo hertimî Ewropayiyan û welatên din yên biyanî ku qazanc û berjewendiyên bazirganî yên xwe bi Komara Îslamî re bidomînin, herwiha payedar rabigire.

Nabe em rêz ji yad û bîranîna Dr. Qasimlo bigirin, lê basekê ji siyaseta bazirganî ya hikûmeta ew dem ya Otrîşê ku ew cinayet û bûyere di wê derê de qewimî, nekin. Otrîş weke welatekê ku xwazyarê demokrasiyê ye û di dilê Ewropayê de cih girtiye, tevî wê ku îdiaya mafê mirovan dike û tevî wê ku dijberiya terorîzmê dike, lê dema ku ew cinayete qewimî, zor bi hêsanî hevkariya terorîstên Komara Îslamî kir û ber bi Tehranê bo wergirtina Padaş a cinayetên xwe şandin. Ew terze siyaseta ku hetanî niha di Ewropayê de baw bûye, piştî wî çaxî zêdetir ji hemû demekê rastiyek zaf û berçav kiriye ku ew jî Diyalog ya Rexnegirtinê – ewa ku bo xwe basê lê dikin – ne tenê nekarî ye bandoreke erênî di pêk anîna guhartinan di rejîma Komara Îslamî ya Îranê de pêk bîne û wê rejîmê ber bi demokrasiyê bajot, ji ber ku teşwîq kirine bo wê ku zêdetir mafên mirovan bin pê bikin, wan bi misoger kirina hin berjewendiyan ku Ewropayiyan misoger kirine, Ewropa kirine piştevanek bo xwe, ji ber wê çendê ku her cinayetekê ku bixwazin, biafirînin û Ewropayî jî bibin bi temaşevan. Lê niha em dibînin ku ev siyaseta di Ewropayê de bi wî terzî nema ye, çunkî ew rastiyên ku Ewropayiyan berê nedizanîn yan jêve bûn ku rejîma Komara Îslamî hertim li ser misoger kirina qazanc û berjewendiyên wan dê paydar bimîne, niha gihîştine vê baweriyê ku ew xetera hevbeş ku hemû aliyek têde pişikdar in û ji aliyê Îranê ve tê sadir kirin, zor mezintir ji wan qazancên bazirganî yên ku renge bo wan dabîn bike.

Lewma em dibînin ku di pirsa çekên etomî de, Ewropayî bi siyaseta Emerîkayê re nêzîktir dibin û bi giştî ew nerazî bûna tevalî ya ku di xwedî Îranê de dijî Komara Îslamî heye, zêdetir ji rabihorî Ewropayiyan derheq bi encama alîkarî yên wan bi Komara Îslamî re bêhêvî dike.

Eva parek in ji vê pirsê, lê para din ku beşeke herî bingehîn û esasî ya hêza xelkê ye. Xelkek ku bi sedemên xapandina mesebî yan nenasîn û ne şehrezayî ya li ser rejîma Komara Îslamî yan her sebebeke din piştevanî ji Komara Îslamî dikirin, yan jî bêtefawet bûn, niha ew xelke bi agahî û hişyarî ve xebatê dijî Komara Îslamî dikin. Çunkî wan rejîma Komara Îslamî nas kirine, mafên xwe nasîne û baş dizanin ku mafên wan ji aliyê Komara Îslamî ve têne pêpest kirin. Di vê heyamê de bi çavên xwe dîtine ku heta wî çaxî ku Komara Îslamî li ser kar bimîne, îmkana rihetî, asayiş, tenahî û azadî di Îranê de li xewnekê zêdetir nine, lewma xelkê Îranê niha micidane û cesûrane xebatê bo hiloşandina vê rejîmê dikin. Di vê navberê de zêdetir ji her qatekê, qata agah û rewşenbîr ya civaka me, xwendekar di vê xebatê de beşdar in, çunkî agahî û zaniyarî ya wan zêdetir e. Niha tenê çend rojek ji 18'ê Tîrmehê bihorî ye, 18'ê Pûşperekê ku têde Komara Îslamî bi destê hêza xwendekaran ve kete lerizînê, ku ji wî çaxî hetanî niha ev xebate di şekl û terzên cur be cur de di nava xwendekar û civatên xelkê Îranê de didome.

Em bawer in ku xwazyarên aştî û azadî û xortên demokrat, qutabiyên Dr. Qasimlo ku alîgirên vê peyamê ne bo xelkê Îran û cîhanê, dê di vê xebatê de serkevtî bibin. Serkevtina me hetmî ye û me bawerî jî pê heye. Çunkî pêvajoya cîhan û guhartinên cîhanê bo me dide eyanê ku: Em baş dibînin û Komara Îslamî jî baş dibîne ku çawa rejîmên dîktator û serberdayî yek piştî yekê mijûl in ji holê radibin û cihê xwe bi hikûmetên gelî didin. Ku rejîma Komara Îslamî jî nikare ji vê resm û qaidê bi dûr bimîne.

Em bi vê sedemê di vê rojê de di gel hemû xortên xebatkar û şoreşvan yên Îranê û bixasmanî xelkê Kurdistana Îranê, peymanê nû dikin ku rêbaza Qasimlo rêbaza xebata me ye, siyasetên wî çirayê rêya têkoşîna me ye, rêyek ku niha zêdetir ji berê ronahî ketî yê û merem û armancên me ku azadiya gelên Îranê ku yek ji wan gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye, zêdetir ji hergav û rabihorî ron û berçav û aşkira ye. Tenê şerxwaz û neyarên azadî, aştî û biratiyê ne ku vê ronahiyê nabînin, çunkî çavên wan li hemberî hemû rastiyekê de kore. Ew di tarîtiyê de ne û her di vê tarîmayînê de dibe sedema wê ku bihiloşin.

Di rastî de bîranîna Dr. Qasimlo ne yadek e ku em tenê di roja 22'ê Pûşperê de, roja şehîd bûna wî de rêz bigirin. Dr. Qasimlo di dil û hundirê me şoreşvan û xebatkarên rêya Dr. Qasimlo, xortên demokrat de ye, hertim em yada wî dikin û cihê wî di nava xwe de vala dibînin, lê em dilxweş û hêvîxwaz in bi wê ku siyasetên wî ku bingehên siyasetên PDK Îranê pêk tînin, herwiha dê heta serkevtinê rêya me be.

Serkevtin ji bo gelê me û hiloşîn bo Komara Îslamî

Spasiya we dikim.

# Rêveçûna rê û resmeke berfireh li Goristana Pêrlaşêz ya Parîsê seba 15'mîn salvegera şehîdbûna Dr. Qasimlo û hevalên wî




Bi cehd û xebata Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistan a Îranê û bi alîkariya Deftera Nûneratiya Partiyê li Parîsê, piştînîvroya roja şemiyê 13'ê July ya 2004'ê Zayînî rê û resmeke berfireh seba bîranîna 15'mîn salvegera bûyera Viyenê li Goristana Pêrlaşêz ya Parîsê bi pişikdariya komek zaf ji ciwan, endam û tagirên PDK Îranê ji welatên Skandînawî, bitaybetî Swêdê ku piştî 2 rojan rêyê gihîştibûne Parîsê û herwiha endam û tagirên Partiyê li welatê Firanse hate lidarxistin

Xincî hejmara navbirî hejmareke berçav ji dostên Partiyê û kesayetiyên kurd û Ewropayî jî bo rêzgirtin ji bîranîna Dr. Qasimlo hatibûn ku ji wan em dikarin îşare bi Dr. Kendal Nezan, Serokê Enstîtoya Kurd li Parîsê, Kekê Kamran Cîcîkan, Sekreterê Giştî yê Enstîtoyê, Dr. Fuad Husên, siyasetvanê naskirî yê Îraqê û sefîrê pêşerojê yê Îraqê li Firanse. Birêz Merwan Osman ji rêberên Partiya Yekîtiya Gelê Kurd li Sûriyê, P. Cuys Bilo, mamostayê ziman û temedona Rojhilatê ji Enstîtoya Rojhilatnasî ya Parîsê, Jan Birtolîno, rojnamevanê navdar yê televîzyonê li Firanse, Mêrîla Glêtî nivîskar û karnasê Îtaliyayî, Dr. Mûsa Keval Berpirsyarê berê yê têkiliyên kar û barên derve yê Kongreya Navnetewî, nûnerê PDK Îraqê û PUK'ê li Firanse, nûnerekî Rêxistina Bangewaza Jênêvê a dijî mayîn yên dijî nefer û zaf xebatkarên Kurd û Îranî û hwd … .

Di destpêkê de Ciwanên Demokrat ku bi kincên Kurdî hatibûne diyarê gulxemla rêberên şehîd, bi rewşeke rêk û pêk ref girêdabûn û arma partiyê û alaya Kurdistanê û nîgarên şehîdên rêber tevî çend tacegulan bi dest ve girtibûn û ber bi mezarê şehîd Dr. Qasimlo û Ebdullah Qadirîazer bi rê ketin û piştî ku gihîştin mezarê wan, ev cih bi awayekî bedev xemilandin.

Demjimêr 2/5'ê bernameya rê û resmê bi sirûda neteweyî ya **Ey Reqîb** û deqeyek rawestan bo rêzgirtin ji bîranîna nemiran dest pê kir. Piştre xanima Sozan Fetahî û Şîlan Ebdullahî ku bi zimanê Kurdî û Firansî bername rêvedibirin, daxwaz ji birêz Aso Hesenzade alîkarê Nûnerê Partiyê li derveyî welêt kirin ku ji aliyê Deftera Nûneratiya Partiyê li Parîsê ve bi xêrhatina pişikdarên vê rê û resmê bike. Birêz Aso di axavtina xwe de tevî şandina aferîn û destxweşî ji bo ciwanên dilgerm û biemeg yên demokrat, zindî mana bîranîna Dr. Qasimlo di dilê nifşa nû de bi baştirîn hêz ji bo serkevtina vê xebata ku Dr. Qasimlo canê xwe di rêya vê de gorî kir zanî. Piştre peyama hevalê xebatkar Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ji aliyê heval Selah Hacî Reşîdî ve hate pêşkêş kirin. Di peyama birêz Mistefa Hicrî de tevî keyfxwşbûn ji bo ku navê Dr. Qasimlo hertim cihê hêviya ciwanên demkrat e, wisan hatibû: "Ev cehd û xebata îroyîn ya ciwanan canê Dr. Qasimlo şad dike, ji ber ku ew rêberê mezin baweriyeke kûr bi hêz û şiyana qahîm ya ciwanan hebû". Piştre Dr. Kendal Nezan, Serokê Enstîtoya Kurd li Parîsê bi zimanê Firansî qonaxên fermî yên jiyan û xebata Dr. Qasimlo bi bîr xist û taybetmendiyên mirovî û siyasî yên bilind yên Dr. Qasimlo destnîşan kir. Paşan bi zimanê Kurdî rû ji ciwanan kir û tevî kêşana panoramayek ji kesayetiya Qasimlo, basa vê çendê kir ku dibe Qasimlo ji bo we mînak û hêviyek be, dibe wek Qasimlo mejiyê we Ewropayî, lê dilê we Kurdî be, ger hûn cehd bikin dê di civaka Ewropî de serkevtî bin û dibe vê serkeftinê bixin xizmeta neteweya xwe ji bo mukûm kirina dostayetî û piştevanî ji gelê kurd.

**Pişkên din yên bernameyê bi vî awayî bûn:**

Peyama Komîteya Rêveber ya Giştî a Yekîtiya Ciwanên Demokrat a Kurdistan a Îranê li welatê Swêdê, ji aliyê heval Merîwan Nestanî Berpirsyarê Giştî yê Yekîtiya Ciwanan li Swêdê.

Sirûda **Ey mamosta yê mezin û zana** bi dengê xatûna Behiye Heyderî û Kursa Yekîtiya Ciwanan.

Peyama Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistan a Îranê li Ewropa ji aliyê Emîr Sultanî.

Sirûda **"Merêjin bom firmêskî xem"** bi dengê Qadir Qurbanî û kursa Yekîtiya Ciwanan.

Nameya Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistan a Îranê li Ewropa ji bo sefîrê Otrîşê li Firanse ji aliyê xatûna Nîştiman Ezîzî.

Kilama **Li Pêrlaşêz** bi dengê Kekê Yosif Kirmancî.

Pexşana **Şehîd** ji aliyê xatûna Kejal Sultanî.

Helbesta **Bo Qasimlo** ji aliyê birêz Çiya Eliyar.

Piştî dawî hatina bernameyê, ciwan tevî pişikdarên rê û resmê komkom diçûne bal gulxemla şehîdan Qasimlo û Qadirî, û bi danana gulan bi dilên tijî seh, soz û peymanên xwe bi armancên wan ducarkî kirin:



## Rêveçûna rê û resmeke berfireh li Goristana Pêrlaşêz ya Parîsê seba 15'mîn salvegera şehîdbûna Dr. Qasimlo û hevalên wî

**Dom: R. 7**

Piştre hemû beşdar bihevre çûne ser gulxemla şehîdên Berlînê, Dr. Sadiq Şerefkendî, Fetah Ebdulî û Humayon Erdelan û soz û peyman digel wan nû kirin.

Hêjayî gotinê ye ku di vê demê de ku pişikdar ber bi gulxemla şehîdên Berlînê ve diçûn, şandeke Ciwanên Demokrat pêkhatî ji rêzdaran: Merîwan Nestanî, Mojde Ezîzî û Cemal Bayezîdî pêka qirarekê ku di pêşê de Deftera Partiyê li Parîsê ji wan re rêxistibû, tevî birêz Aso Hesenzade ber bi Balyozxaneya Otrîşê li Parîsê rê rê ketin, ku li wir ji aliyê birêz Hêrbêrt Pîklêr Rawêjkarê Sefîr û Berpirsyarê Têkiliyên Giştî yê Balyozxaneyê bi fermî hatin pêşwazî kirin.

Di wê hevdîtinê de heyeta şandî serbarê bîranîna parmêtêrên bûyera Viyenê, li ser heqaniyeta vê daxwaziyê ku dewleta Otrîşê rê bi paş ketina doseya wê bûyerê bide yan jî her nebe ragehandineke fermî di vê pêwendiyê de bixe rojevê, pêçeqandin û karekî wisan gavek zanîn ku di vê rewşê de dikare arîkariyê bi pêvajoya demokrasîxwazî ya di Îranê de biket.

Birêz Pîklêr di axavtina xwe de tevî rêz girtin ji baweriya ciwanên Kurd yên Ewropayê bi senbol û behayên pîroz yên azadî û mafê mirovan, soz da ku nameya Ciwanên Demokrat di vê derheqê de bi destê karbidestên herî bilind yên hikûmeta welatê xwe bigehîne.

Di êvariya vê rojê de ciwanên bi hest û demokrat bi dilekî geş û pir hêvî xatira xwe ji Pêrlaşêz û hevalên partiyê li Firanse xwestin û ji bo vegeriyan bo welatên cur be cur yên Skandînawî bi rê ketin.

# Peyama Sekreterê Giştî yê Partiyê bo rê û resma 22'ê Pûşperê li Pêrlaşêza Parîsê

**Xortên bihest û dilsoj!**
**Hêviyên pêşeroja welatê me!**
**Silav û rêzên bêdawî!**

Ez destên mandî yên we diguhişînim ku hûn ji rêyeke dûr ve hatine bo dîtin û peyman nû kirin tevî mamosta û rêberê hertim zindî yê me Dr. Qasimlo yê nemir li Pêrlaşêzê. Bila Komara Îslamî ya Irenê, qatilê wî mirovê mezin, bibîne ku çawan kêla Dr. Qasimlo yê serbilind bûye ziyaretgeha xortên evîndar yên ax, welêt û ogirê evîn û xweşewistiyê. Bi dil ve bal bidin! Niha jî ev mamostaye dersa welatperwerî û fidakariyê ji bo we dibêje. Ew rêya serbilindiyê nîşanî we dide ku gorî bûn di rêya azadiya welêt de ye.



**Ezîzino**

Roja 22'ê Pûşpera sala 1368'e Rojî (1989), dema ku dilê Dr. Qasimlo bi gule yên cehl û nezaniyê di nav dilê Ewropa de hate kon kon kirin,




ev hilgirê peyama aştî û bextewerî bo gelên Îranê bû, lê dijminê dilreş yê aştiyê ku bi wateya aştî û bextewerî ya mirovan xerîb û biyanî bûn, hilgirê vê peyamê şehîd kirin. Encama wan siyasetên kevneperestane yên rejîmê di vê demê de zêdetir ji hemû demeke aşkire bûye. Ew encame jî tiştek cuda ji paremayî ya welêt nine. Bêhêvî û bêzariya xelkê ji rejîmê û navbirina Komara Îslamî wekî rejîmeke yaxî bûyî ji yasaya navnetewî ku bi nepenî çekên etomî çê dike, geşandina terorîzmê, dest di kar û barê welatên din yên deverê bi taybetî cîranan de werdide û mafê mirovan bin pê diket.

PDK Îranê piştî şehîd bûna Dr. Qasimlo herwiha serbilindane di meydana xebat û rikeberî kirin dijî Komara Îslam a Îranê de maye û Partiya berdilê civatên xelkê Kurdistana Îranê ye.

**Xortên dilgerm!**

Hûn di demekê de 15'mîn salvegera şehîdbûna Dr. Qasimlo li Pêrlaşêzê bi bîr tînin ku Kongra 13'ê ya PDK Îranê, çend rojek e ku bi serkevtin ve bi dawî hatiye û çend guhartinên girîng yên siyasî di bername û pêrewa navxwe de pejirandî ne. Hilbijartiya vê Kongrê hewl dide ku komek guhartinên hewece di rêxistina ser li nû ya Partiyê de pêk bîne ku tevî serdema nû ku serdema pêşketin û demokrasî û mafê mirovan e hevaheng bin. Yek ji wan guhartinan girîngîdaneke zêdetir bi nifşa ciwan û perwerde kirina wan bo rêvebirina Partî û welatê me di pêşerojê de ye.

Em hêvîxwaz in ku hûn ciwan jî bi seh kirin bi berpirsayarî kirineke zaftir ji berê, kar û tekoşîna xwe di astê xizmet kirin ji bo gelê zulimlêkirî yê xwe û pêgehandina xwe ji bo pêşerojeke geş û ron ku di asoyê de ye mizext bikin, ku eva canê Dr. Qasimlo şad diket, çunkî ev rêberê jêhatî baweriyekî zaf bi hêz û îradeya qahîm ya we ciwanan hebû.

Bi vê hêviyê ku em hemû bixebitin ku xwendekarên rastîn yê mekteba mamostayê mezin Dr. Qasimlo bibin.

# Serdana şandeke bilind ya PDK li Deftera Siyasî ya PDK Îranê

Şandeke bilind ya Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi serokatiya birêz Fazil Mîranî, Sekreterê Mekteba Siyasî û pêkhatî ji rêzdaran: Zeîm Elî, Azad Berwarî û Mesûd Saleyî Endamên Deftera Siyasî û Remzî Şeban û Qadir Cebarî Endamên Komîteya Navendî, demjimêr 11'ê pêşnîvroya roja pêncşemî 8'ê Gelawêja 1383'ê Rojî (29.07.2004), serdana Deftera Siyasî ya PDK Îranê kirin.

Şanda PDK ji aliyê şandeke bilind ya hizbê ve, bi serokatiya birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî û rêzdaran Hesen Şerefî, Elî Mêhrperwer, Hesen Restgar, Mistefa Mewlûdî û Mihemed Nezîf Qadirî Endamên Deftera Siyasî û Çeko Rehîmî, Kawe Behramî, Simayîl Bazyar û Kemal Kerîmî Endamên Komîteya Navendî bi germî hatine pêşwazî kirin.

Armanc ji vê serdana şanda payebilind ya PDK pîrozbahî kirin ji rêberiya Partiya Demokrat bi hinceta serkevtina Kongreya 13'em ya Partiyê û pêdeçûn li ser têkiliyên birayane yên her 2 aliyan bû, her



di wê demê de di rûniştineke 4 seetî de komek pirsên girîng û rewşa cîhanî û Kurdistana Îraqê ketine ber bas û li ser mijarên han bîr û nêrîn hatine guhartin.

Demjimêr 3'ê paşnîvro ya wê rojê şanda PDK ji aliyê şanda PDK Îranê hate rê kirin.

# Semînarek bo rêz girtin ji bîranîna 15mîn salvegera şehîd bûna Dr. Qasimlo li Hewlêrê




Bi hinceta 15'mîn salvegera teror kirina Dr. Ebdulrehman Qasimlo, demijimêr 5:30 piştînîvro ya roja duşemî 30'ê Pûşpera 1373'e Rojî (20.07.2004), ji aliyê Komîteya Xwendekaran ya Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistan a Îranê, bi nîşaneya rêz girtin ji xebat û têkoşîna wî kesayetî, rêber û mirovê mezin, semînareke rêz girtinê di hola Rizgarî ya Endazyarî a Zaîngeha Selahedîn de, bi amade bûna hejmareke zaf ji mamosta û xwendekar yên Zanîngeha Selahedîn û heriwha şandeke PDK Îranê rêve çû.

Destpêka semînarê bi çend beş ji gotinên Dr. Qasimloyê nemir dest pê bû, piştre peyama Komîteya Amadekar ya Semînarê ji aliyê Kekê Zahid Xelîêfanî, xwendekarê Zanîngeha Selahedîn ve hate xwendin.

Parek ji karê semînarê bo gotara Profsor Dr. Marif Xeznedar, Mamostayê Zanîngehê û dost û hevalê nêzîk yê şehîdê nemir Dr. Qasimlo hatibû terxan kirin. Axaftina Dr. Marif Xeznedar 2 beş bû:1. Derheq kesayetiya mezin ya Dr. Qasimlo di warên cur bi cur de û 2. Serpêhatî yên xwe bi Dr. Qasimlo re.

Di beşeke din ya semînarê de birêz Soran Elîpûr, Berpirsyarê Gişt yê YCDK ya Îranê peyam(mesaj)a Yekîtiya Ciwanan bi wê hincetê xwend.

Piştî xwendina helbesta hozanvanê Kurd Şêrko Bêkes bo vê semînarê ji aliyê Birêz Rehîm Reşîdî, hevalê birêz Hesen Şerefî, Endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê derheq jiyan û têkoşîn û herwiha xasmanî yên mamostayê nemir, Dr. Qasimlo gotareke dewlemend pêşkêşî beşdarên semînarê kir.

Bi vê sedemê helbestvanê law, Pola Seîd parçe helbestek li derveyî welêt şandibû ku ji aliyê beşdarekî semînarê ve hate xwendin.

Beşeke din ji semînarê taybet bû bo pêşandana Fîlma Nirxa Azadiyê ji berhemên hunermend Ferhad Erşedî li ser jiyan û kesayetiya şehîd Dr. Qasimlo.

Di dawî ya karê semînarê de çend kes ji beşdarên simînarê li ser aliyên cur be cur yên kesayetî ya siyasî, civakî û wêjeyî yê Dr. Qasimlo axivîn.

Qirar e, berga yekem ya pirtûkeka bi navê **"Tavgeyî Heqîqet"** ku gotar, hevpeyvîn, basên teorî û berhemên Dr. Qasimlo li xwe ve girtî ye di demeke zû de bigihîje destê xwendevanan. Ev pirtûke ji aliyê birêz Kawe Behramî endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê ve hatiye berhev kirin.

Hêjayî gotinê ye ku, hola semînarê bi wêneyên cur be cur yên şehîd Dr. Qasimlo hatibû xemilandin û li ser parçeyekê bi awayekî mezin hatibû nivîsîn: **Pêxemberê Aştiyê kuştin, lê karwanê rêvîngên ber bi aştiyê her bi rêve ne.**

Semînar demijmêr 21:30 şevê dawî bi krê xwe anî.

# Nameya Dr. Ebdulrehman. Qasimlo bo sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî (Têbînî 1)

**Wergêran ji zimanê Farsî: Kakşar Oremar**

Kurdistan 03.08.1988

Rêzdar Javier Péres de Cuéllar, Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî:

New York, Welatên Yekbûyî Yên Amerîka:

**Rêzdar Sekreterê Giştî!**

9 sal berî niha dewleta Komara Îsmalî ya Îranê, şerekî nexwestî li ser serê gelê Kurd dasepand ku hêjî berdewam e. Ev şer ku di meha Mars ya sala 1979'an de bi şêweya şerên herêmî destpêbibûn, di meha Aout ya hemen salê da hemû Kurdistana Îranê girte ber xwe ku zêdetir ji 7 mîlyon kes têde dijîn(T. 2). Di dema 9 salan de, zêdetir ji 40,000 kes ji gelê bêbergirî yê Kurdistanê bûne qurbana vî şerê dasepandî û bi sed hizaran kes jî derbider bûne. Hêzên çekdar yên Komara Îslamî, bi bikaranîna çekên herî modern, gelek gund wêran kirine û di nava bajaran de jî xisarên mezin gehandine rûniştvanan. Saziyên aborî jî ziyanên mezin dîtine. Dewleta navendî bi armanca serkûtkirina gelê Kurdistanê, 200,000 kes ji çekdarên xwe, şandine Kurdistanê û 3000 qirargehên leşkerî di gundan û çiyayên Kurdistanê da, çêkirine. Di roja îro da Kurdistana Îranê bi temamî hatiye mîlîtarîze kirin û bûye leşkergeheke mezin.

Daxwaza gelê Kurdistanê tiştekî pir sade ye: Ew di çarçova welatê Îranê da, daxwaza otonomiyê dikin û ev mafek e ku peymana rêxistina navnetewî wê bi fermî nas dike.

Dema ku di 18'ê Juyiyê da, dewleta Komara Îslamî biryara 598'an pejirand, Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê (ku rêberatiya bizava Kurdistanê dike), pêşwazî ji avêtina vê pêngavê kir. Çimkî partiya me ev şerê han ji roja destpêkê şerekî bêwate û vala û li dijî berjewendiyên gelên Îran û Îraqê dizane û alîgirê bi dawîanîna şer û çêbûna aştiyê di navbera du welatên cîran de bûye.

Lê bi dawîbûna şerê di navbera Îran û Îraqê, şer di welatê me de bi



dawî nabe. Berxwedana çekdarî ya gelê Kurdistanê bi armanca teimînkirina demokrasiyê ji bo Îranê û otonomiyê bo Kurdistanê, hêjî berdewam e. Em di hemen demê de ku bi navê partiyeke siyasî û berpirsiyar, piştgîriya xwe ji bidawîanîna şerê di navbera Îran û Îraqê de, didin diyarkirin, bi eşkerahî jî dibêjin ku şer di welatê me de bidawî nehatiye û aştî tenê wê demê hemû Îran û sinorên Îran û Îraqê yê bigire bin bandora xwe ku daxwazên gelê Kurdistanê yên adilane cî bi cî bin.

**Hêja sekreterê giştî:**

Partiya me ku 43(T.3) salan xwedî pêşîneya çalakî yên siyasî ye û hertim dijî terorîsim, revandina mirovan, revandina balefir û bi giştî her karekî bûye ku jiyana kesên sivîl û bêdîfai xistibe xeterê. Partiya me hertim dijî şer û alîgirê aştiyê bûye. Niha hûn dixwazin di sinorên Îran û Îraqê de, aştî û tenahî bi cih bibe û ev armancek e ku em jî li pey digerin, lê karekî wiha ger du dewletên Îran û Îraqê jî bi hevre li ser bigihîjin encamekê jî(li hev bên), heya dema ku şer di Kurdistana Îranê de bi dawî neyê, ne mumkine. Niha çendîn kîlometr ji sinorê hevpar yê Îran û Îraqê di axa Îranê de, di bin kontrola Pêşmergeyên Hizba Demokrat da ye. Çend hizar kes Pêşmerge hertim yê bikarîbin aştiya vê herêmê bêxin bin metirsîyê.

Hûn ku mîna Sekreterê Giştî yê Neteweyeyên Yekbûyî, xwedî wezîfeya parastin ji mafê mirovan û diyarkirina mafê qedera gelan in, bê guman divê agehdar bin ku şerê di navbera Îran û Îraqê de, li ser hisaba gelê Kurd bê bi dawî anîn. Ez bixwe îlam dikim ku gelê Kurdistanê bi biryar e ku bi hemû îmaknên xwe ji daxwazên xwe yên rewa û hebûna xwe biparêze. Li ser armanca teimînkirina aştiyeke berdewam û cihgîrbûna tenahiyê di herêmê da, divê mercên teimînkirina aştiyê di Kurdistanê da bêne li ber çavgirtin. Ji bona wê jî di cî bi cî kirina xalên biryarnameya 598'an de, divê ev babet jî di destûra hevdîtinan de cîh bigire.

**Rêzdar sekreterê giştî:**

Pirsgirêka Kurd di Îranê de, ne pirsgirêkeke hundirîn e. Di vir de mafên herî sereke yên neteweyî û insanî yên neteweke tên pêpest kirin û hûn xwedî wezîfe ne ku bi armanca parastin ji mafê mirov û mafê hebûna yek ji resentirîn û kevnartirîn gelên herêmê, karên pêdivî encam bidin.

Em li benda kiryarên we ne û amadebûna xwe ya temam di vê derbarê de, diyar dikin. Herwiha careke din jî bi eşkerahî dibêjîn ku eger pêşniyara me li berçav neyê girtin, xebatên we yên aştîxwazane jî bi temamî bi ser nakevin û elbete berpirsyariya vê serneketinê yê bikeve ber Rêxistina Neteweyên Yekbûyî.

Bi pêşkêşkirina hurmetên bêdawî

Ebdulrehman Qasimlo

Sekreterê Giştî yê Hizba Dimokrat ya Kurdistana Îranê(T.4)

Têbînî 1: Di sala 1988'an de serokê Rêxsitina Neteweyên Yekbûyî Xavîyêr Pirêz Dukuyilar bû. Navê wî yê orjînal wiha tê nivîsandibn: Javier Pêres de Cuêllar

Têbînî 2: Xuyaye ku name di sala 1988'an de hatiye nivîsandin. Di roja îro de li gor anketa dawiyê hejmara Kurdên Rojhilatê Kurdistanê zêdetir ji 10 mîlyon kesa ye.

Têbînî 3: Hizba Demokrata Kurdistanê di sala 1945'ê Zayînî de hatiye ava kirin.

Têbînî 4. Name ji arşîva rêzdar Elî Qazî hatiye standin.

# Demokrasî, biha û piraktîka wê

## Beşa 6

Kurmanc Hakkî
hejar@yahoo.com

**Bi heq kirina peymanên biryardanê di teoriya wîsta gel de**

**Yekdengî**

Tevî bas kirin di biryardana kolektîv de, em dikaribin li ser ***yasayên biryardanê*** biaxivin, yên ku nîşan diden dengê çend kes ji endamên civakê ji bona ku biryarek bê dan hewce ne. Hejmara dengên hatî dayî li gor teoriya ***peymana dengan*** dikaribe yasayî bibe. Teoriya han ji bo yasayî kirin û berheq kirina serbestî, yeksanî û rasionalîsma civakî bi awayekî sîstematîk û li gor peymanên civakî tên cî bi cî kirin. Peymanên enstîtotiyal (sîstematîk) eger endamên civakê bi awayekî yekdeng dema girêdana peymanê pesind bikin, yasayî ne. Yekdengiya civakê demekê cî bi cî dibe ger dema girêdana peymana hilbijartina naveroka peymanê di berjewendiya takekes de be.

Di vê beşê de em dê li ser mijara peymana biryardanê ku bi teoriya James Buchnan û Gordon Tullock tên nas kirin, bisekinin. Ev teoriyane em dikaribin bi şêweyekî ji berpirsyarî (responsibility). Ji xwe pirensîpên berpirsyarî rohn û zelal ninin û hewce ye bên şirove kirin. Wateya wê yekê çiye ku divêt biryar bersîva hilbijartina xelkê biden? Em bas ji helbijardeya kê dikin? Ya hemû şarovendan yan piraniya wana?

Di pirtûka xwe de Buchanan û Tullock piroseya biryardana kollektîv li gor teoriyên aborî û li ser bingeha teoriya *Pareto-Optimum* hatiye şirove kirin. Pareto-Optimum di mêzegeha civakî de bi wateya wê ye ku cî bi cî nekirina biryara ku bi raya piranî hatiye pesend kirin bi kêmanî bi ziyana yek kes tewaw dibe. Li gor dîtina civaka asayiş (wel fare) Pareto-Optimun hewce nake ji bo berhevdana asayişa jiyana navbera du kesan bê bikaranîn. Di jiyana aborî de Pareto-Optimum demekê cî bi cî dibe ku takekes bi awayekî dilxwaz di girêdana peymanan de beşdariyê biket. Li ber vê yekê ye jî di bazarê de guhartin bê dilxwaza beşdarên muamilê cî bi cî nabît.

Li gor dîtina Buchanan û Tullock peymanên biryardanê divêt bi awayekî yekdeng ya endamên civakê, hevdem digel pesend kirina distûra bingehîn bên pesend kirin. Ji ber guhartina rewşa siyasî û civakî ji bo takekes gelek zehmet e bizanibe di pêşerojê de çi biryareke siyasî dê bikaribe bibe hilbjiardina wî. Bi vî awayî bo takeyên civakê zehmet e biryarê li ser yasayekê yan peymanekê bidin ku xizmeta wana neket. Li gor dîtina Buchanan û Tallock ew şik û gumane di dema nivîsandin û pejirandina distûra bingehîn ya welêt de pêwîst e.

Di dema dariştina distûra bingehîn de her kes xebatê diket bi awayekê kar bike ku wezîfeya wî ya distûrî bi şêweyekî herî erzan hatibe xuyanî kirin. Li gor Buchanan û Tallock di biryardanê de du cur xerc hene: ***Xercên derveyî*** û ***xercên biryardanê***. Xercên derveyî dema biryardan li ser hilbijarteya take kes pêk tê. Xercên biryardanê jî dema gotûbêj û dan û standin li ser biryarê bo mirov pêk tê. Em dikarin naveroka biryaran li gor pîvanên berfirehî (inclusive) û bertengayî ya (exclusive) wana bipîvin. Bi gotineke din çi qas ji beşdarî ya endamên girûpekê ji bona pesend kirina biryarekê hewce ye. Bo nimûne pesend kirina biryarê li gor 2/3 dengan yan endamên civakeke berfirehtir ji biryara li gor piraniya beşdarên di dengdanê de ye.

Ji dema biryardana kollektîv bi yekdengî tên dan, her kesek dikare bi dengê dijî pêşiya wan biryaran yên ku hilbijartê wî ninin bigire û ewa jî nabe sebeba xerceke derveyî ji bo takekes. Yekdengî ya biryardanê xerceke giran dixe stûyê civakê, ji ber ku di rewşekî wiha da, takekes mafê ***wêto***'yê heye. Xerca biryardanê di sîstema dîktatorî de gelek kêm e û di hember da xerca derveyî ya biryardanê bo takekes di sîstemeke wiha de giran dikeve. Herçend çarçoveya biryardanê berteng bît û endamên civakê îmkana beşdarî di biryardanê de nebin, bi vî awayî xerca biryardanê kêm û xerca derveyî ya biryardanê zêdetir dibe.

Li gor Buchanan u Tullock takekesên rasional (eqlanî) dema dariştina distûra bingehîn peymanên biryardanê bi awayekî dinivîsinin, ku xercên derveyî, hilbijartin di kêmtirîn radeya xwe de bin. Her çend yasayên biryardanê li gor babetan tên guhorîn. Yasayên hilbijartinên dengdanê li gor babetên dengdanê tên guhorîn. Distûra bingehîn ya wê îmkanê pêk tîne ku bo pirsên cur bi cur yasayên cur bi cur yên dengadanê hebin. Bo nimûne derheq mafê şarowendan (hevwelatî) yasayên biryarê dikaribin berfireh bin. Ji ber ku xerca derveyî ya biryardanê ji bo takekesên indamê civakê gelek zor e.

Li gor dîtina Buchanan û Tullock mirov dikare yekdengiyê ji bo biryardanê bi dest bîne, eger biryardanê wek piroseyeke dînamîk mêze bikin. Di wê rewşê de yekdengî bi awayekê dê bê bi dest anîn ku di piraniya endamên civakê de li ser babeta biryardanê guhartin çê dibe. Bi wê wateyê ku endamên civakê li ser hinek hilbijartinan pêk tên. Yanî eger kesek deng bo hilbijartina cîranê xwe bide bi wê mercê ku ew jî di pêşrojê de dengê ***erê*** bi hilbijartina wî bide. Ev ***pêk hatine*** digel vê basê cuda ye, eger bêt û biryardan bi awayekî kollektîv bît yan jî bi lez û bez bît.

Teoriya Buchanan û Tullock ji aliyê hinek lêkolînvanên zanista siyasetê hatiye rexne kirin. Brain Barry di pirtûka Argûmêntên siyasî yên xwe de ji ber ku xerca biryardanê tenê merca xwe ladan ji yekdengiyê hatiye danîn, ew teoriye bi şêweyekî bertengker (inclussive) hatiye dîtin. Teoriya Buchanan û Tullock wê demê dibe sebebê ne edaletiya civakî û pêk hatina statoyên taybetî. Bi vî awayî guhorîna rewşa na adilane ya berî amade kirina distûra bingehîn dê zehmet bibe. Li gor hinek rexnegiran teoriya Buchanan û Tullock ***altirnatîveke siyaî ye*** ku li gor wê erka dewletê berî gişkan berhemanîna berhemên giştî ye. Li gor wê dîtinê erka dewletê berî gişkan dest nîşan kirina berhemên giştî û pêk anîna bingehên yasa ya bac (malyat)ê ye. Wê demê girifta mezin ya teoriyên siyasîbûn bi cihê bê baweriyê û yeksaniya siyasî ye.

Di hejmara tê de hizra piraniya dengan dê bê şirove kirin.

# Pirsa neteweyî û cihê wê di cîhana nû de

**(Beşa 2 û dawî)**

**Kerîm Perwîzî**

Netewe û têgihîştinên bi vê wateyê, di bingeh de wate (mefhom) û hizrîneke nûjen in ku desketa şoreşa pêşesazî (senetî) li Ewropa û bi taybet şoreşa Firanse ye. Di Ewropayê de û di pêvajoya pêşketin û dîrokî ya civakê de, neteweyên cur bi cur di dilê Împratorî yên kevn de der ketine holê û dewleta taybet bi xwe ava kirin. Lê li hinek welatên pir neteweyî weke Îranê, di demeke taybet de û bi mifah wergirtina narewa ji wateyên nûjen, derfetên navneteweyî û serkut kirina gelên bindest, cehd û bizava afirandina huwiyeteke saxte (kazib) bo hemû xelkên welatan dida ku zor caran vê huwiyetê, bingehên xwe ji çanda neteweya xwedî deshilat ya siyasî werdigire.

Di çaxê şoreşa Meşrote ya Îranê de bû ku wateya **Neteweya Îranê** û zaraveya **Welatê Îranê** hatne nav gotara siyasî û rewşenbîrî de. Bi ji navçûna deshilata Qacaran û piştî amadekirina bingehên fikrî yên huwiyeta direwîn, **Rizaxan** bi navê deshilata siyasî û nûneriya neteweyekê ku deshilata navendî di desta de bû, bi zor û serkut, ev huwiyeta direwîn pêşde bir û ji vê demê pêde û bi şêweyên cur bi cur, deshilata navendî di Îranê de, hewla çespandina vê huwiyetê û ji bîrkirina neteweyên din yên rûniştî yên Îranê da ye û cehd kiriye ku ewan di nav pênaseya berdil (dilxwaz) ya xwe de bihelîne û çand û huwiyeta wan ji holê raket.

"Di Îranê de bo parastina pênaseyeke taybet ji hevalbendî ya neteweyî, hişyarane û ne hişyarane, hewl hatiye dayîn rewşeke wisan pêk bihêt ku parek ji xelkê yan meydanên deshilatê, nemaze deshilata navendî, dest bidete curek ji qewmgeriyê". (8)

Armanca sereke ya ji hewldan bo helandina çand û qewmgeriyê, mifah wergirtina nexwaz (nabicih) ji cudahiyan di Îranê de bo cihgir kirina deshilateke narewa bûye.

"Di rastî de, qewmgerî bo çewsandina hundirê deshilatê, ye nek çand û ev nukteya ku dibêje li her cihekê cudahîdanan hebe, deshilat heye û deshilatdar in ku li ser wateya cudahîdananê biryarê didin". (9)

Têkilî yên xwezayî di navbera çand û neteweyên cuda de, têkiliyeke dualî û diyalîktîkî ye ku di wê de netewe, dan û standinên çandî yên wekhev û hevta dikin û bi awayekî beramber û bi mifah wergirtin ji desketên hevdu, çanda xwe dewlemendtir dikin. Di vê dan û standinê de çi yek ji netewe, serdest ninin û bi awayekî hevta, têkiliyekî hêvîdar û dualî bi hev re hene. Lê ev têkiliya di Îranê de û ji ber tevxwazî ya deshilata hakim, hatiye destêwerdan û şêwazekî bidestçêkirî pê hatiye dan. Hemû demekê deshilata navendî ji rêyên cur bi cur ku li ber dest de bûye, mijûlî çêkirina huwiyeteke diyarîkirî bo neteweyên bindest bûye. Ji hatine serkara Rizaxan ve hetanî niha û bi sedema pêşgirtina siyaseteke wiha ji aliyê deshilata navendî, her dem di Îranê de pirsgirêkek bi navê pirsa neteweyî hebûye ku di her dem û qonaxekî dîrokî ya amade û bicihkirî ku derfeta xwederxistinê bo derketibe pêş, deshilata hikimdar di Îranê de tûşî girift û qeyranan kirî ye.

" Wisan xuya ye ku têkelî (terkîb)a şeqama yekalî û pêwendî yên stûnî, têkeliyeke balkêş e û hevrengiya wê tenê di wan welatane de peyda dibe ku kêmanî yên çandî, bê wê ku dest li çavkaniyeke dinê bigihîje, bi şeqameke wisan yekalî û bi metoda stûnî dorpêç hatibin dan. Bi vî awayî û di rewşekî wiha de em dikarin bi guhdarên nerazî bi nav bikin. Guhdarek ku her dem deshilata hilbijartinê hebe, dibe çavnihêriya wê bihê kirin ku dest ji guhdarî kirinê hilbigirin". (10)

"Di hinek ji welatên pir neteweyî de, curên hevşêwe (hevreng)ya zêdebayî, ji dan û standinên çandî di navbera deshilatên navendî û herêmên derdor de bidest dikevin. Ev teraza nerênî di demekî dirêj de bilî ji pirsgirêk û qeyranan, çi destketeke din nabe". (11)

Di sedsala bîstan de, pareke zaf ji bîrmend û teorîsyenan, bi li berçav girtina diyardeyên weke berfireh bûn û cîhanîbûna aborî û li ber şoreşa têkilî û zanyariyan, wisan difikirîn ku nasyonalîzm ber bi lawaz bûnê diçe û gelên cîhanê ber bi curekî hevpêwendî ya cîhanî diçin ku têde çi nîşane ji hez û wîstên herêmî nine, hetanî wê qasê ku bas ji **Gundeke Cîhanî** dikir. Di Îranê de jî û bi mifah wergirtina nexwaz ji vê babetê, dest dane serkût û sivik zanîna xwastekên neteweyî yên gelên bindest. Her cure anîne hola daxwazeke neteweyî, kevneperestane û bi nîşaneya paşdeman û Eşîregeriyê dizanîn. Lê pêvajoya dîroka bûyerên salên dawî yên sedsala bîstan, berevajî ev nêrînane derxist:

"Ji sala 1990'ê de di kêmtir ji 200 welatan de pitir ji 800 tevgerên neteweyî hebûn". (12)

"Di dawiya dehsala 80'an û destpêka dehsala 90'ê de, pirsgirêka mafê kêmaniyan bû bi yek ji girîngtirîn pirsgirêkên cîhaniyan. Zor ji tevdanan serçavgirtî ji nerazî bûna kêmaniyan in ku di wê derbirîna nerazî bûn û ji hev cuda bûn (veqetîn)an çavkanî digirin ku li mêjwe ye nehatiye berçav girtin". (13)

"Di dawiya sedsala bîstan de, cîhan berfireh bûna çand yan taybetgerî bi xwe ve dîtiye. Em dikarin ji nimûneyên cur bi cur yên taybetgerî ya çandî û serhildan û lihevdanên qewmî û tevgerên neteweyî nav bibin ku bi **pêlên sêhem yên nasyonalîzmê** tên naskirin". (14)

Niha ku mijaraeke nû di cîhanê de hatiye holê û cîhan li hember guhertinên kûr de ye, siyaseta kevn û mezinxwaz ya deshilatên narewa û nemaze deshilatên "twênerxwaz" yên deshilatdaran di Îranê de digel zaf qeyranan rû bi rû dibin. Yek ji girîngtirîn pirsgirêkan, girifta neteweyên bindest di Îranê de ye ku di cîhana nû de û bi mifah wergirtin ji wan derfetane ku vê diyardeyê bo wan pêk aniye, deshilata navendî tûşî qeyranê dikin.

Deshilatan hikimdar di Îranê de, her dem ji rêya kanalên fermî ve dest dayîne weşandin û belav kirina siyasetên dilxwaz yên xwe û ew



# Pirsa neteweyî û cihê wê di cîhana nû de

***Doma: R. 12***

**(Beşa 2 û dawî)**

huwiyeta lerizî û derewîn ya dest çêkirî ya xwe xurt kirine û gelên bindest jî zanyariyên hewce yên xwe zortir ji rêya vê kanalê ve bi dest aniye. Eva jî bû sedema vê çendê ku zaf caran li ber siyasetên deshilata navendî tûşî qeyranên huwiyet û li xwe biyanî û xerîbî bûnê bibin. Lê di cîhana îro de û li ber ew rewşa ku îşare pê hate kirin, diyardeya cîhanîbûnê derfeta zor bo neteweyên bindest pêk tîne ku bikarin daxwazên xwe bas bikin û ji kanalên fermî yên hikimdar ve digel cîhana derve têkiliyê bigirin û xwe derxin û pênaseya huwiyeta xwe bikin.

"Li ber pêşketina teknolojiyên nû yên têkilî kirinê û bingehên wê di seranserî welatên cîhanê de, mafên kesayetiyan jî girîngiyeke zortir peyda kirî ye û di rastî de bûye sedema pêkhatina cihê tirsê bi deshilatan û derfet bo kêmaniyan". (15)

Cîhanîbûn bi çend awayan bandora xwe li ser pirsên neteweyî kirî ye. Nemaze bo neteweyên bindest ku bûye sedema hildana hişyarî ya neteweyî û bihêz bûna tevgera nasyonalîstî. Cîhanîbûnê deshilatên navendî û hêza dewletî lawaz kirî ye. Li ber têkilî û yasayên nû çi din serxwebûna tewaw ninin û neçar in stûyê xwe bo beha û yasa yên navneteweyî şor bikin. Eger di rabihorî de rêz bo dîktatorî ya pawankirî û bi maytêkirina hêzên derveyî hate danîn, îro raya giştî daxwaza rêz girtin ji beha yên cîhangîr û destketên mirov weke carnameya cîhanî ya mafê mirovan û birêve çûna demokrasiyê ye.

"Bi giştî mafê hikimdariyê hewcehî bi deshilateke bihêz û bê lêre û vêde û giştgir û pawankirî heye. Lê demokrasî li ser kom nekirina deshilatê di navendê de, pêşî girtina deshilatê, ploralîzm û beşdariyê pê diçeqîne". (16)

Ji bandorên din yên cîhanîbûnê eva ye ku xelk daxwazkar in ku têkiliya rasterast – bê kontrol ya deshilata navendî – digel derve bigirin. Nemaze der barê neteweyên bindest ev şiyan û karînane ji dest propagendeya deshilatê ve wan rizgar dike û ew derfetê bo wan pêk bîne ku di




cîhana rû li guhartin ya îro de huwiyet û çanda xwe bi cîhanê bidin nas kirin.

"Guhartina zanyariyan ji rêya kampyuterê ve, belav kirina bernameyên radyoyî, bernameyên mahwareyî û peyivîna telefonî di Bazgeha Gomrekê de **qedexe** nabin. Cuda ji vê çendê ku ev pêwendî girtinane A) wisan xurt dimeşin ku zêrevanî kirina dewletê bo zanyariyan dijwar dikin û B) Ew hinde bi zor dimeşin ku dewlet bo zêde kirina karînên xwe nikarin bi tewawî dewsa wan bigirin. Medyaya giştî ya elektironîkî jî, ji deshilata dewletan bo ser pêkhateyên ziman û fêr kirin û elimandinê kêm kirî ye". (17)

"Hişyariya neteweyî – çanda parek ji wê hişyariya agahiyan bibe ku dibe sedema bihêz bûna wan hêzên ku ji navendê dûr dikevin". (18)

Yekekî din ji wan derfetên ku cîhanîbûn bo neteweyên bindest pêk tîne, eva ye ku dikarîn daxwazên xwe bi dûr ji deshilata navendî, di kom û komeleyên navneteweyî de bînin holê.

"Tevgerên qewmî – netewexwaz hinek caran bo pêşde birina xwastina mafên xwe ji pêwendî yên cîhanî mifahê werdigirin. Rêxistina Netwe û gelên bênûner di dema avakirinê, ji sala 1991'an were alîkariya 50 civakên endam yên xwe bo pêşde birina daxwaziya xwe dane". (19)

Bi balkişandin bi wê çendê ku hate gotin, di welateke wekî Îranê de ku her dem daxwazên neteweyên bindest hatiye serkût û bîr kirin, diyardeya cîhanîbûnê deriyekê ber bi cîhaneke din diveke ku ji givaş û siyasetên serkûtkerane yên deshilata navendî azad dibe û alaveke nû bo gihîştin bi hêviyên xwe bidest tînin.

Baştirîn û jêhatîtirîn awayê bi hev re jiyana van neteweyane di cîhana nû de, bi hev re jiyana hevta û bê dîktatorî yek ji wan bi ser ewên din de ye û têkiliya wan têkiliyekî hevteraz û hêvîdar e ku şêwaza siyasî ya wê dibîte sedema damezrandina nîzemeke Demokratîk û Federal di Îranê de.

***Jêder:***


*1. Ehmed Gulmhemedî; cîhanîbûn, çand û huwiyet, r 11*

*2. Yan Art Şolt; lênihêrîneke kûr bo mijara cîhanîbûnê, r 50*

*3. Çavkaniya berê, r 56*

*4. Syîd Mihemed Mehdîzade; "Enqilabê Irtibatat, Camiêyê şebekêyî ve zhniyet ve huwiyet napaydar*

*5. Dr. Mehdî Muhsinyan Rad, "zeroret tewezuh bê Irtibatat miyan ferhengî der camiêyê Îran berayê mowacihê sehîh ba tehewolat camiêyê Itilaat.*

*6. Yan Art şolt, lênihêrîneke kûr bo mijara cîhanîbûnê, r 202*

*7. Çavkaniya berê*

*8. Dr. Mehdî Muhsinyan Rad, zeroret tewezuh bê Irtibatat …*

*9. Gul Mihemedî, r 70*

*10. Dr. Mehdî Muhsinyan Rad, zeroret tewezuh bê Irtibatat …*

*11. Çavkaniya berê*

*12. Falk, 1992*

*13. Mensor Saî, mafê kêmaniyan*

*14. Gul Mihemedî, cîhanîbûn, çand û huwiyet*

*15. Mensor Saî; mafê kêmaniyan*

*16. Yan Art Şolt; lênihêrîneke kûr bo mijara cîhanîbûnê, r 170*

*17. Dr. Mehdî Muhsinyan Rad, zeroret tewezuh bê Irtibatat …*

*18. Yan Art Şolt; lênihêrîneke kûr bo mijara cîhanîbûnê, r 210*

# Lidarxistina civîna girûpa karê Entirnasiyonala Sosyalîst bo doza Kurd li bajarê Diyarbekir

***Doma R. 20***

1- Hevdîtin tevî Şaredarê Navenda Diyarbekr û rûniştin tevî cihgirê yekem yê şaredar birêz Yosif Argon û hijmareke berpirsên bajêrvaniyê.

2- Hevdîtin tevî rêberê Partiya Demokratîk ya Gel û civîn tevî birêz Nezmî Gor, Cihgirê Sekreterê vê Partiyê û her wisan birêz Bîrtane, berpirsyarê yekem yê vê Partiyê li bajarê Diyarbekir.



Di wan du Hevdîtinane de, berpirsan di pêwendî tevî pirsgirêk û kar û çalakî yên xwe de, raporeke berfireh pêşkêş kirin. Di beşekî dinê ya vê bernamê de, girûpa karê Entirnasyonal Sosyalîst basek li ser çawaniya çalaktir kirina girûpê pêşkêş kir. Di dirêjiya karê vê bernamê de, soz hate dan ku girûpa navbirî di pêwendî tevî doza Kurd di çar welatên Îraq, Îran, Turkiyê û Sûriyê de, di yek ji welatên Ewropayî de civîneke berfireh pêk bîne. Berpirsyarê girûpa kar, birêz Konî Firêdrîkson serbarê gotûbêj kirin bi Sekreterê Giştî yê Enternasiyonala Sosyalîst û nûnerê Partiyên din yên endam di girûpa kar de ragehand ku ev civîna di 3-4 heyvên din de yê pêk bêt. Her di vê pişkê de, li ser daxwaza berpirsyarê girûpa kar û nûnerên din yên beşdar di civînê de, nûnerê PDK Îranê li derveyî welêt di pêwendî tevî rêveçûna Kongra 13'ê û biryarên cur bi cur yên wê bi taybetî guhartina dirûşma stiratêjîk ya Partiyê ji Otonomî (Xudmuxtarî)yê bo Federaliyê wekî rêçareyekî herî baş bo doza neteweyî di Îranê de û her wisan hilbijartina hevalê xebatkar, birêz Mistefa Hicrî ji aliyê Komîteya Navendî ve weke Sekreterê Giştî yê Partiyê axivî.

Hêjayî gotinê ye ku şanda beşdar ya PDK Îranê di vê civînê de pêkhatî bûn ji: hevalan, Xusro Ebdullahî Nûnerê Partiyê li Derveyî Welêt, Şaho Husênî nûnerê berê yê Partiyê li derveyî welêt û û Sadiq Zerza Berpirsyarê Komîteya hizbê li welatê Holend.

# Dadgeha bê encam ya doseya kuştina Zehra Kazimî

**Amadekar: Bozê Sîna**

Di rojên şemî û yekşemiyê 17-18'ê Julaya 2004'an de, tenê piştî li darxistina 2 civînan, mehkeme kirina Karmendekî Wezareta Îtilaat ya Komara Îslamî, Mihemedriza Eqdem Ehmedî (42 salî) ku bi kuştina Zehra Kazimî, rojnamevana Îranî – Kanadayî, ku qasê salekê berî niha di dema binçav kirinê de li **Zîndana Êwînê** jiyana xwe ji dest dabû, bi destûra Qaziyê dadgehê nişkêwe bi dawî bû.

Parêzerên parastina malbata Xanima Kazimî di nerazî bûna xwe li hemberî vî karê Qazî de, ji îmza kirina nivîsa dawî ya civînê xwe parastin û ji dadgehê derketin. Wan anî ziman ku dadgeh ne adilane ye.

Şîrîn Ebadî, wergirê Xelata Nobêl ya Aştiyê ku yek ji van parêzeran e, da xuya kirin ku kujerê rastî kesekî din e ku divêt bo mehkeme kirinê bînin dadgehê. Her wiha wê da zanîn ku dadegehê nexwest ku şahid û kesên ku em dixwazin bihêne dadgehê, cî bi cî biket.

Li darxistina vê mehkemeyê bo Dezgeha Dadê ya Komara Îslamî ya Îranê her ji destpêka rûdana wê cinayetê karekî dijwar bû û berpirsyarên dadê yên rejîmê zor bi dijwarî bi doseyê re tevgeriyan. Dijwar bûna karê vê doseyê di vir de bû ku Dezgeha Dadê bi anîna kesekî bêguneh bo dadgehê dixwast ku huwiyeta kujerê eslî kifş nebe, ku li gor gotina yek ji Parêzeran kujerê eslî rayedarekî Dezgeha Dadê ye. Li gor wê rewşê, berpirsyarên Dezgeha Dadê hez dikirin ku ev mehkemeye di demekî kurt de bihête li darxistin û pêdeçûna bi vê doseya pir girift her çi zûtir dawî bînin.

Parêzerên malbata Kazimî jî piştrast bûn ku ji derfeta vê dadgehê mifahê werbigirin û rastiyên îşkence kirin û kuştina Rojnamevana Jin Zehra Kazimî aşkira bikin.

Dezgeha Dadê ya Komara Îslamî ya Îranê di destpêkê de di bin givaşên dewleta Kanada û Yekîtiya Ewropayê, neçar ma ku civîna yekem ya dadgehê (roja şemiyê) azad û eşkere bimeşîne. Lê di civîna yekem ya roja şemiyê de, dayika Zehra Kazimî, berevajî dilê rayedarên Dezgeha Dadê û Qazî yên Dadgehê dest bi gotina rastiyan kir û bi çavên giryan û li cem dîplomatên biyanî û nûnerên medya yên cîhanî û hundir anî zimên ku keça wê (Zehra) bi îşkence kirinê hatiye kuştin.

Bê şik heke dadgeh zû dawî nehatiba û li gor daxwaza parêzerên malbata Xanima Kazimî, şahid û bi taybetî Seîd Murtezewî, Dadstanê Tehranê di dadgehê de



**Dayika Zehra Kazimî (Rast),Şîrîn Ebadî (çep), piştî derketin ji dadgehê**

# Dadgeha bê encam ya doseya kuştina Zehra Kazimî

***Doma: R. 14***

amade biban, reastiyên pitir aşkira dibûn û kontrol ji destê Dezgeha Dadê ya rejîmê derdiket.

**Ji çûna dîplomat û nûçegihanên biyahî û nûnerên medya yên hundir hate girtin**

Di roja duhem ya dadgehê de çi yek ji Balyozên Kanada û dîplomatên din yên Ewropayî û nûçegihanên biyanî û hundirê Îranê mafê beşdarî kirin di dadgehê de nebûn!

Ji bo gelek welatên Ewropayî û Rêxistinên navneteweyî yên parastina Mafên mirovan, ev dadgehe ceribandinek bû ku bibînin rayedarên Îranê hetanî çi qas nirx û pîvanên mehkemeyeke adilane diparêzin.

**Rexne girtina Yekîtiya Ewropa ji dadgehî kirina doseya kuştin Zehra Kazimî**

Yekîtiya Ewropayê di daxuyaniya dawî ya xwe de ji çawaniya rêveçûna ne adilane ya doseya kuştina Zehra Kazimî tevlî helwêsta dewleta Kanadayê bûn. Eva di halekê de ye ku dewleta Komara Îslamî ya Îranê bi tundî li ser bê guneh bûna Mihemedriza Eqdem Ehmedî, karmendê Îtilatê tekez dikin.

**Dewleta Kanadayê balyozê xwe ji tehranê xwest**

Dewleta Kanada bo nîşandana nerazî bûna xwe ji pêvajoya doseya kuştina Zehra Kazimî, wênegirê Îranî - Kanadayî, Filîp Mek Kînin, Balyozê xwe li Tehranê xwest.

Bi vî awayî dadgehên Komara Îslamî ya Îranê bo careke din jî bo raya giştî ya cîhanê îsbat kirin ku çi rêz û hurmetekê ji yasa û rêbazên hiqûqî û mafê mirovan nagirin û xwîna Zehra Kazimî û bi sedan kesên wekî wê bi vî awayî tê rêtin û çi encamek jî dijî Komara mirovkuj ya Komara Îslamî nahê hilgirtin.

***Çavkanî: Malpera BBC***

# Derheq 17'mîn salvegera Kîmyabaran kirina bajarê Serdeştê

***Azad.Kurdî, azad@kurdistanmedia.org***

Şer di her ciheke cîhanê de diyarî yên nerênî û malwêranker bi xwe re tîne. Di civaka Mirovahiyê bi giştî û nemaze di sedsala 20'an de bi mîlyonan mirovan jiyana xwe ji dest dane. Bi mîlyonan jî mirovan endameke laşê xwe ji dest dane û ji jiyana normala xwe di cîhanê de bêpar mane. Bandora xirab ya şer di welatekê de piranî bo çaxê piştî şer vedigere. Yek ji şerên herî mezin û pir qurbanî di çarêka duhem ya sedsala 20'an de şerê Îran û Îraqê bû ku 8 salan dom kir.

Li gor serhijmêrî yên dewleta Komara Îslamî, bi giştî 130 hezar kes li Irene bi birîndarên kîmyayî yê hatine texmîn kirin. Hezaran kesan jî jiyana xwe ji dest dane. Di vê navberê de rewşa 10 hezar kes ji wana ne baş tê zanîn. Nesax û seqet û goriyên çekên kîmyayî di Îranê de yek ji hezar bandorên şer di civaka îro ya Îranê de ne.

**Cinayeta Serdeştê**

Salekê berî ku Sedam Husên Dîktatorê berê yê Îraqê ku dixwast bajarê Helbeçe ya Îraqê bi bombên kîmyayî bimirîne û cinayeteke mezin ya din di dîroka reş û biyom ya deshilatdariya xwe de tomar bike, di roja 7'ê Pûşpera sala 1366'ê Rojî (28.06.1987) de, bajarê Kurdan yê li Kurdistrana Îranê ji aliyê hêzên mirovkuj û hov yên rejîma Bees ya Îraqê di wê demê hate Kîmyabaran kirin. Di encama wê kiryara aşkira ya hêzên serkutker yên Sedamê Dîktator de 7 bombên 550 kîloyî yên gaza kîmyayî ya Xerdelê avêtine ser bajarê 20 hezar kesî yê Serdeştê. Tê gotin pitir ji 100 kesî ji xulyaqetê wê (Kurd) hate kuştin û zêdetir ji 12000 kesan jî birîndar bûn.

Mezintirîn û balkêştirîn pirsa wê cinayetê, bêdengiyek bû ku me him ji aliyê Rejîma Kurdkuj ya Komara Îsalmî ya Îranê û him jî ji civaka navneteweyî di hemberî wê de me dît û bihîst. Rast bû ku bûyera Han li germe germa şerê Îran û Îraqê de qewimî û bi qasê ku hewce bû pir reng nebû, lê ew îdeaya rayedarên Komara Îslamî nikare bibe bersîva xelkê Kurd bi giştî û Sertdeştê bi taybetî. Kûrahiya cinayeta Serdeştê gelek mezin bû, eger di heman salê de bi başî li ser medya û dezgehên ragehandinê hatiba şermezar kirin, êdî bûyereke nexweş û dijî mjirovane wekî Helebçê nediqewmî.

**Derdê bêderman**

Bi giştî hemû nûjdar li ser vê bawerê ne ku dermanê çareser kirina yekcarî bo nesax û birîndarên kîmyayî tunine. Ji ber ku çê bûna sedî li sed ya van kesane (birîndarên kîmyayî) çi nine, lewma ew dibe bi şêwe û rêyên cur bi cur digel pirsgirêk û nesaxiya xwe derbas bikin. Niha êdî malbatên hemû ew kesên ku di qadên şer de bûne, nigeranê saxî û silametiya zarokên xwe ne. Hewce ye ku ev kesane azmayîşên nûjdariyê bikin. Lê azmayîşa kîmyayî bo her kes 250'î hezar Tûmen (300 Dolar) e. Eva bi xwe pirsgirêkeke mezin tîne holê, piraniya van kesane ligel girifta aborî rû bi rû ne.

Der barê curên çekên kîmyayî yên ku di şerê Îran û Îraqê û nemaze li bajarê Serdeştê jî, karnas dibêjin ku 3 cur gazên



kîmyaî hatin bi kar anîn. 1.Gazên dijî Esab, 2. Gazên perçiwînê, 3. Gazên fetisandinê. Di nava wan 3 curên gazan de Gaza Fetisandinê dibe sedema kuştina piraniya xelkê, lê gazên din kêmtir dibine sedema kuştinê.

Bandora bi cih mayî ji çekên kîmyayî pêkhatîne ji: Pirsgirêkên tund yên bêhnê, xurîn û hişk bûna çermî, perçiwîna çerm û dest bi hebûna tiştekê di çavî de. Li encama çareser ne kirina bandora çekên kîmyayî li ser mirovan gelek nexweşî yên din jî roj bo rojê di wan kesan de peyda dibin. Berdewam bûna nexweşiya kîmyayî piraniya nexweşan tûşî pirsgirêkên ruhî (pîskolojîkî) dike. Tê gotin ku hin nexweşên kîmyayî neçar in ku li ser pêyan razên ku eve dibe sedema xurt bûna wan nexweşiyane di kesên tûş bûyî bi çekên kîmyayî.

Di rastî de girifta seqet û nesaxên kîmyayî, nebûna îmkana mifah wergirtin ji dermanan e. Seba vê çendê ku nexweşên kîmyayî di warê kar de tevî gelek pirsgirêk û kospan rû bi rû ne, kirîn û bidest xistina dermanan jî dijwar e û di hêza kesên nexweş de nine.

Li bajarê Serdeştê bandora çekên kîmyayî, hêjî maye. Di salê de çend kes jiyana xwe ji dest didin.

**Cinayeta Serdeştê divêt bibe yek ji gunehên Sedam Husên di dadgehê de**

Ji holê ra kirina çekên kîmyayî yên rejîma Bees ya îraqê yek ji armancên bingehîn yên êrîşa hêzên hevalbend bo ser Îraqê bû ku di encamê de Rejîma Bees hilveşiya û Sedamê cinayetkar û hov hate girtin. Bi rastî eger ev dadgeha ku wan rojane bo mehkeme kirina Sedamê hov pêk anîne, qirar be mehkemeyeke adîlane û şerafetmendane bo rêvebirina edalet li hemberî wî be, û ne alavek bo gihîştin bi hinek qazanc û meremên siyasî û aborî yên xwe, di vî halî de divêt ku cinayeta Serdeştê jî bibe yek ji sûçên wî di dagehî kirinê de.

Xelkê bajarê Serdeştê niha jî çavnihêrê wergirtina bersîva wî li hember ew cinayeta mezin û dijî mirovî de ne.

Mifah wergirtin ji çekên Kîmyayî dijî şarowendên sivîl û leşkerî yên her welatekê, li gor deqa peymannameyên navneteweyî, bi taybetî pertokola 1925'ê ya Jinêwê, qedexe ye.

***Wêne ji malpera Dimane.com hatiye wergirtin.***

# Osman Sebrî Apoyê gelê Kurd

***Amadekar: Emîr Şuayîwend***

Dema Mirov mêzeyî rûpelên dîroka pir biserhat û bûyerên Kurd û Kurdistanê dike, dibîne pir in yên ku jiyana xwe bext kirine ji bo aştiya gelan û serxwebûna Kurd û Kurdistanê, yek ji van stêrkên her tim geş û domdar di esmanê tore û siyasetê de rewşenbîr û xwedîhizrê qedirgiran Apo Osman Sebrî ye. Wî jiyana xwe di rêya janê de domand û rêya jiyanê xiste ber gelê xwe.

Osman Sebrî di roja 05.01.1905'an de li gundê Narincê ji yayik bûye. Narinc rûniştgeha sereke ya Eşîra Merdîsan û bavê Osman serokê vê Eşîrê bû. Di sala 1915'an de bavê wî diçe ber dilovaniya Xwedê û Apê wî Şukrî cihê bavê wî di Eşîrê de digire û xwedî kirina Osman dikêşe stûyê xwe û wî didanê ber xwendinê.

Di sala 1922'an de dibistana leşkerî bi dawî dike û di wê navberê de, welatperwerê Kurd Simayîl Efendî nas dike ku ev hevnasîne guhartineke mezin di jiyana wî de pêk tîne. Bo yekem car li ser destên wî mamsotayî dîtin û ramanên neteweyî di mejiyê Osman de cih digirin.

Di sala 1926'an de her 2 Apên Osman Nûrî û Şukrî bi sûçê beşdarî kirin li şoreşa Şêx Seîdê Pîran re tên darve kirin, ev yek bandorê li ser Osman dike û ramanên ku di dil û mejî de, wî hay didin û qonaxên jiyana wî diguhirin. Osman tevî çend hevalên xwe yên hevdoz û bixîret di rêya hişyar kirina xelkê û azad kirina welêt bi awayên nepenî û aşkira dest bi çalakiyan kirin û her di vê salê de Osman û hevalên wî ji aliyê hikûmetê ve tên destbiser kirin û du salan di zîndanê de bi eşkence û lêdanan derbas dikin.

Di sala 1928'an de Osman li ber lêbihorîna giştî ya Mistefa Kemal dikeve û tê azad kirin, lê di sala 1929'an dîsan Osman tevî 26 Axa û serokên Eşîran tê girtin û bo girtîgehê tê şandin û piştî 7 mehan bi alîkariya cihgirê serokê girtîgehê ku mirovekî Kurd bû tê berdan, lê Osman ne wek berê serbixwe bû, çavnihêriya dijwar ya hikûmeta Turkiyê ji her aliyekê givaş xistibû ser jiyana wî û bibû astengeke mezin li hember xebat û çalakî yên wî, Osman nekarî taba wê rewşê bike û di neçarî berê xwe da Kurdistana Sûriyê, ew di roja 24.12.1929'an de derbasî tixûb bû û Kurdistana Turkiyê bi cih hêla.

**Destpêka xebata siyasî ya Osman Sebrî li Sûriyê**

Apo Osman Sebrî li bajarê Kobonê niştecî dibe, ew xebat û çalakî yên xwe ji nû ve dest pê dike û di demek kin de tevî kesayetiyê navdar yê Kurd Celadet



Bedirxan nasyar dibe û di encama vê hevnasînê de Osman dibe endamê Komeleya Xuybûnê, û jiyana wî derbasî qonaxeke nû ya xebatê dibe û ji vê riyê jêhatî û şehrezatiya wî pêtir xuya dibe û wî di demek kurt de digehîne refa serokatiya Xuybûnê.

Di roja 01.07.1930'an de Komeleya Xuybûnê biryarê dide ku dijî hikûmeta Turkiyê dest bi êrîşan biken, di vê encamê de desteyek ji hêzên çekdar yên Bozanbeg bi serokatiya Osman Sebrî berê xwe didin bajarê Orfayê û êrîşê dikin ser çend paygehên leşkerî, piştre hêzên çekdar li benda Serdarên hêza Bozanbeg û birayê wî Mistefabeg man, lê her du Serdar ji aliyê deshilata Firanse ve tên girtin û ber bi bajarê Şamê ve tên şandin. Piştî vê kiryarê hêviya di dilê şervanan tê şikandin û paş vedigerin. Li Sûriyê jî Celadet Bedirxan û Haco û Malbata Cemîl Paşa ji aliyê hêzên dewleta Firanse ve tên girtin û berê van didin bajarê Şamê. Di encama wan kiryaran de Osman bêhêvî dimîne û ji Xuybûnê dûr dikeve.

Piştî vê veqetiyanê Osman berê xwe dide Kurdistana Îraqê û di navbera salên 1931'ê hetanî sala 1938'an çend caran tê girtin û bi salan di girtîgehên Mûsil û Bexdayê de tê bend kirin û ji bilî wan girtinan çend caran jî tê dûrxistin, di sala 1938'an de ku ew li cihê dûrxistina xwe (di sala 1936'an ji aliyê deshilata Firanse ve ber bi Efrîqayê hatibû dûrxistin) direve bo Lubnanê, paşan vedigere şamê û li wê derê cihwar dibe.

Apo Osman Sebrî heta çaxê çend salan li meydana siyasetê dûr dikeve û dest bi çalakî yên rewşenbîrî û toreyî dike û di vê meydanê de berhemên pir bihagiran û binirx vedihûne û bi vî dilê birîndar û bêhna fireh li vê rêyê de car din zend û baskên xwe hildide û di sala 1957'an de tevî rewşenbîr û welatparêzên Kurd li Kurdistana Sûriyê bi ava kirina Partiya Demokrat ya Kurdistanê xebata xwe ya siyasî divejîne, Osman dibe Sekreterê Partiyê û rêbaz û bernameya wê di belavokekê de bi navê **Rêzana Partiyê** belav dike.

Di sala 1960'an de Osman tevî çend hevalên xwe tê girtin û bi berxwedana xwe li hember îşkence û lêdanan alaya serfiraziyê bilind dike, ew di sala 1963'an tê berdan û ber bi Beyrotê ve direve, li wir heta dawî ya sala 1963'ê bi cih dibe. Piştî wan girtin û berdanane hin newekhevî û natebahî dikeve nav partiyê, hin ji endamên partiyê li ser rêbaza pêşîn ya partiyê namînin û Osman Sebrî gunehbar dikin û ji Serokatiya Partiyê dûr dixin, ev biryara ne adilane dibe sebeba xwe vekêşandina Osman Sebrî ji meydana siyasetê. Her çiqas ew biryare ne adilane bû, lê Osman bi qasekî demokrat û siyasî bû ku nexwast biryarek ku bi piraniya dengan hatiye dayîn bişkîne, lê rastiya dîrokê li pişta wî ye û tu caran nayê înkar kirin.

Apo Osman Sebrî di salên dawî ya jiyana xwe de ji ber pîrî, nexweşî, perîşanî û derd kulên giran, nedikarî ne siyasetê û ne jî peyvan bi hev re girê bide yan ji hev cuda bike. Wî di roja 11.10.1993'an de xatira →

# Osman Sebrî Apoyê gelê Kurd

***Doma: R.18***

xwe ji Kurd û Kurdistanê xwast û heta heta çavên xwe li ser hev danan û gehişte karwanê nemiran û li goristana gundê Berkevirê ya nêzîkî Dirbasiyê hate veşartin.

**Osman Sebrî û xebata toreyî û rewşenbîrî**

Ji bilî vê çendê ku Osman rêberekî jêhatî û siyasetvaknekî jîr û zîrek bû, di meydana rewşenbîrî û torevaniyê de jî hertim serkêş û rêzan bû, Apo gencîne ya peyvên resen û baxevanê gulzara zimanê xwe bû, ew helbestvanekî neteweyî û pêşeng û hilgirê bîrek nû û nûjen bû. Bi rastî dema mirov mêzeyî nivîs, berhem û çalakiyên wî di vî warî de dike, ew dem dizane ku Apo çiqas mirovekî mezin û dilşevat û welatparêz bû. Mirov dikare di hemû helbest û nivîsên wî de xema dûrî ji welêt û êş û jana gelê wî bibîne, Apo Osman Sebrî bi rastî di dilê gelê xwe de dijiya û dijît û her dê bijît.

**Divê tu zanibî ev bûne sî sal**
**Min nedît xûşk û bira, xelkê dimal**
**Ne me dît axa welat, pîra diyan**
**Ne vexwar kewser û ger ava çiya**

**Çend gotinên bihagiran yên Osman Sebrî**

Mirov ku bi zimanê xwe re bendewar nebe, nikare îdia bike ku ev ji welatê xwe hez dike.

Gava tu bixwazî gelperwerî ya mirovekî fam bikî ta kîjan derecê pêşve çûye, binêre çiqas ser bi zimanê xwe re bendewar e.

Her bêjeyek kevirekî avahî ya ziman e.

Kesê ku ehmiyet nede zimanê xwe, di jîna neteweyî de tuneye.

Ziman wekî asoya behrê ye, nêzîk xuya dike, lê çiqas diherî tim ew e.

Milet bi du tiştan hişyar dibin: Yek bi darê zulmê, du bi xwandinê.

**Berhemên Osman Sebrî**

1.Elfabêya Kurdî – Şam, 1955

2.Bahoz û çend nivîsên din, 1955

3.Derdê me (gotar û helbest) – Şam, 1956

4.Apo (gotinên xwe nepijin bê tav)

5.Ewlifbaya tikûz – Şam, 1982

6.Çar leheng – Şam, 1984

7.Bersîva Hoşeng – Şam, 1992

8. Serpêhatiyên min – dest nivîs e.



**Osman Sebrî bi malbata xwe re**

Apo Osman Sebrî ji dema ku fêm kir ku ew Kurd e, dilê xwe kire evîngeha her kurdekî belengaz û heta zuha bûna axirîn dilopa kanî ya jiyê xwe, her tim dilsoj û xemxurê gel û welatê xwe bû, wî canê pak yê xwe kire goriyê azadî û mirovahiyê, Apo jan da jiyana xwe ji bo ku jiyanê bide gelê xwe.

**Xwe danînîm bo sitem û zorê**
**Divê serbilind ez biçim gorê**
**Gava birûmet ez biçim goristan**
**Hêja ye bibim lawê Kurdistan**

***Jêder:***
***1.Tarîxa Edebyata Kurdî.***
***2.Kovara Gulan, hejmra 8 û 9.***
***3.Xuybûn û şorîşî agirî.***
***4. Kovara Hêvî, hejmara 6, hevpeyvîn bi Osman Sebrî re.***

## Gotinên mezinan

❍ Ez dibêm çi û tenbûra min dibê çi?

❍ Gotine kore tu çi dixwazî? Go du çavên sax.

❍ Tu diz be şevên reş pir in.

❍ Yê Hêştiran xwedî bike, derê xwe jî bilind dike.

❍ Ne ji gelaca ba, gur û mî wê bihevra bimeşiyana.

❍ Fermana hêştiran derket, roviyan baz da.

❍ Ez dixwazim nan û avê, min mineta kesê navê.

❍ Nalbendan hesp nal dikrin kûselê got pêpkê min.

❍ Babê keçan sultan e.

❍ Siwar heta nekeve, nabe siwar.

❍ Kes naçe gora kesê.

❍ Berê biçûk jî ser şikên e.

❍ Filan kes palê pûşî ye.

❍ Du tişt ji nezaniyê ne: 1.Qenciya ne li cihê xwe, 2.baweriya bi hemû kesan.

❍ Evîna rast ne hewceyî destika ye.

❍ Bersîva nezanan bêdengî ye.

❍ Sebir tal e, lê berhema wê şîrîn e.

❍ Tîrêja rojê bi bêjîngê nayê girtin.

❍ Dil xwedîka dil e.

❍ Qedrê mangê tuneye, heta şev nehê.

# Ez, tu û evîn

***Yildiz çakar, Amed.06.06.2004***

Di gerden bajarekî bê ziman de aveke pîroz bûn,
Hêstirên çavên te.
Û her libên pîroz axê jiyana min dişkand.
Mirada min di qirika min de
Wek kuleke bêderman dima.

Dayika min a porsor li ser porê re dilorand.
Lê ne porê sor mabû ne jî ya reş!
Lingên min xwas in, li ser axa sor!
Niha dicemidin. Kevirê li ber serê te niha sipî dibe.

Nizanim çavên min di kîjan pirtûkê de ye.
Û niha çend rûpelên ne xwedî hene.
Niha di bin kulîlkên berfê de sîs dike her biskên reştarî.
Mixabin, dîsa min a got; porên ku stêrkan ji xwe re li serê hêlîn çêkirine.
Çi bêjim derew e.
Ji ber ku tu hîn di bîra min de yî.
Bîra ku di hewşa pîrika min de av dida gulan.
Lê niha gul jî nema.
Hemû bi çûyîna diya min û bi çûyîna te re serî tewand,
Pel werand niha di bin axa sar de kon vedane …
Min got bîra min!
Bîra ku di dilê min de wek çavzêmikan xeyalan diafirand.
Wek ava qerejdaxê serde diçû,
Ma tuyê çi bibêjî. Gelo xeyal jî di ser de diçe?
Ji wan xeyalan yek tu bûyî. Lê;

**- Êdî ne ez dibûm ezîza ber dilê te, ne jî tu ji bo min ezîz …**
- Mal wêran e. Dil kavilkirî.
Emir kurt e.
Çi helbeste jiyan,
Çi jî çîrokeke kilasîk.
Nizanim;
Lê her dem
Li helbesta ku ji bo min
Hîn nehatibû nivîsandin digeriyam.

Navê wî:
'Ben û Sen' bû.
Li bircên Amdê dîrokekî veşartî bû.
Rûyê te yê entîke niha di bin toza dîrokê de ye.
Ji kerema xwe re destûrekî bide min.
Bes e.
Westandî me.
Her roj temenê min bi êşekî dawî dibe…

Niha wek berdûşan digerim!
Berdûşên ku di bajarên qedexe de evîndar.
Ez, zaroka li ber şîr.
Navê min jiyan e, ya diya min mirin.
Xeyala min baskekî stûr bû
Ya diya min hêlîna bi tifaq.
Lê;
Êdî nikarim li gerdena bajarekî bibim straneke bêhempa,
Ne jî hêlîna li ser porên sor! Ya çivîkan.
Lê êdî çûk jî wekî min nayên malên xwe, stêrkên penaber jî.

**- Li ser hêlîna xerakirî hêlîn nayê avakirin -**
Çûkên çûçik hîn li diya xwe digerin.
Dê, porê xwe hene dike niha. Bask işkestî ye …
Dema ku diya min ji vê dinê koçber bû,
Mala bavê min jî xera bû!
Dil hebû bi te re hêlînekî,
Mixabin paxila te ne wekî diya min germ bû û dîsa hêlîn xera bû.

Berê porsor bû diya min,
Niha nizanim.
Ez tov bûm, paşê gul.
Gula ku di şaxê xwe de şikestî.
Şaxên min wek Dicle û Feratê dibûn du qelîtok.
Hezar dest di qelîtokan de xatir dixwe.
Mixabin destê dayika min ji gustîla tilîka wê dihat nasîn.
Agir bi kezeba min diket.
Stiran dibû zêmareke ku tu car nehatibe gotin.
Û min dilorand.
Wek lorandina ku dayika min li ser dergûşa min dikir.
Wî çaxê dîsa tu dihatî bêra min.
Lê qonaxa dayika min li biheştê jî tunebû.

Ji ber ku biheşta dilê min ji yê Yazadann pîroztir bû.
Ji ber vê yekê ku hîn destê diya min
Wekî rûyên te di bin toza dîrokê de maye.
Stirana ku ji êşê za bû, rê didît li ser destên qermîçî.
Lê ji zûde destên qermiçî ketibûn nava hev.
Ax hîn wê dişkand.
Pêsîrên diya min dimiçiqî.
Ez zaroka ku di paxila wê de xizan dimam,



Tu ji bo min dîsa xeyal.
Jiyan, evîn û tu …
Niha tenê sê xal..
Gelo kî min fêm dike niha.

Li hemberê awêneyeke şikestî me, û li xwe dinihêrim.
Di her parçeyên şikestî de bi hezaran ez!
Tu! Evîn û …
Wek dilopên êşê bûn bayê ku li ser rûyê min diramiya.
Her diçû har dibû, bi harbûnê mezin dibû.
Lê ez hîn di nava hezar şikestinan de me.
Carinan porê min bi xwe re ba dikir,
Carinan hêviyên min.

Lê wekî her demê di nava qelîtokan de an çavên min têkdiçûn an destên min. her yekî di nava yekî din de bi cîh dibûn. Lê ba û qelîtok wekî hev bûn. Tenê yek lehengiya evê dikir ya din bi neçarî ya rojê. Bi evê re demsala cihê xwe ji çileya zivistanê re dihît ya bi rojê bihara bê çivîk. Tu pênûsên pîroz nedinivîsandin. Ne roman, ne çîrok. Tenê helbesteke ku nehatibû nivîsnadin qal dikir …. Ew helbesta tu bi xwe bûyî. Ma min dikarî bû qala te bikirana?

Dengê te dihat bi bayê dîn. Û min berê xwe dida ber tîrêjên melodiyan! Gelo jiyan xewn e? Derketim ber derî, paşê min berê xwe da qolana tenêtiyê. Goristana sar bi kevirên reşşewq didan. Dayika min a porsor destmal dilaqand.
Lê ne dengê te hebû, ne jî bayê dîn.
Her tişt bû derew. Lê,
Hîn bi hezaran sdal e dayika min porê xwe hene dike …………..
Û tu tuneyî. Dayika min tuneye. Tenê ez, tu û evîna min …

# Ey rêber, tu her nehatî!

Mihemed Salih Qadirî

Ey ji dayik bûyê Şeva Yeldayê, rêvîngê karwanê ronahî û azadiyê, dijminê tarîperestan, melevanê behra evînê, evîndarê dayika jînê, stêrka bextê Kurdan di şeva reş û tarî de, çavên min ji rêya te bûn, lê tu her nehatî.

Ey ew kesê ku bo gihîştin bi azadî û rizgariya gel û welêt, te dil kire hêlûna kul û xeman û te can kire siwarê egîdî û fidakariyê, tu her nehatî. Ev çavkaniya ilm û zanistê, û gupika hêvî û baweriyê, rogeha evîndaran, zimanzanê rêveker, nasname û navdarê Kurdên belengaz, mêrê roja tengayî û oxirme yên giran, çavên min ji rêya te bûn, tu her nehatî.

Tu dizanî ji kengê ve li benda te me û çavê min ji rêya te ye? Ji dema ku te rêya çûn û nehatê girte ber xwe û ji dema ku te dixwast kela hêvî û daxwazên me di nava babelîsk û kiroveya zordariyê de biparêzî û nehêlî ronahiya dilê biçûk û pir hêvî yê viyana me bitemire, belê ji wê demê ve çavên min ji rêya te ne û ez çavnihêrê te me, lê tu her nehatî.

Havîn û payîz bihorîn û dinya jî gewilî û xweza noris bû, Quling jî çûne Germyanê û Pêşmerge jî vegeryane êvirgehên xwe yên zistanê, çavên min ji rêya te bû, lê tu her nehatî.

Çavê min ji rêya te bû ku kengê, kengê tu dê bihêy û bi girnijîna şirîn ya xwe careke din hêviya jiyanê bidî me û bi nûçe û mizgîna oxira xwe, wekî derketina çavê rojê, germahiyeke nû bêxî nava dilê pêşmergan û hêviya serkevtinê nêzîk bikî, lê tu her nehatî.

Befrê jî serê çiya girt û mij û dûman jî hatin, dîsan tu her nehatî. Min wisan hizir dikir ku tu dê tevî hatina biharê, digel herikîna ava kanî yên jiyanê û bişkujîna xwezaya Kurdistanê, ku Pêşmerge jî vedigerine meydana xebat û dîlana şoreşê û çeperên berxwedanê nûjen dikin, hingê bihêy, lê tu her nehatî.

Ey rêber, ey ji bîr ne kiriyê rêya Qazî, mişextî û dilşewitî yê Kurd û Kurdistanê, bextreşê çerxa felekê, teyrê per şikestî û derbider, bo min eyan bû ku sebeba nehatina te eva bû ku dijmin bi bêbextî û bi merema vê ku rêvîngên rêbaza demokrat bê pêşeng bihêle û aşê şoreşa gelê Kurd rawestîne, gula temenê tejî ji hêvî ya te hilverandin û tu kirine mêvanê xerîbî û nehatiyê.

Ax û hezaran ax, ji bo vê bûyera tal û dilêş, çi derdeke bê derman e, hindî çi dikim nikarim ji feleka xayîn bawer bikim, bo min wekî xewnekê ye. Ey Perperoka bi agirê evînê Perşewitî, Azadîxwazê azadî nedîtî, hêvîxwazê hêvî ji dildamayî, aştîxwazê ketî davka şerxwazan, elehê ketiye ber guleyên neyaran, evîndarê negihîştî bi mirazê, canxelatê bo welêt, mamostayê Qutabî sêvî hêlayî, te zanî şehîd bûna te çend dilê dostan şikand û dilê dijminan li me şad kir û dijmin bi vê derba giran û bijan, çawan dil û hinavên me şewitand û pişta me çewand!! Lê dilgiran nebe, dijmin nekarî bîr û ramanên te ji me bistîne û bi koriya çavê dijminê korefam, heval û hogirên jêhat û emegnas yên şopa te li ser vê tevna ku te bo wan raçandî û ew binêşeya ku te bo wan danayî, nehêlan alaya destê te bikeve erdê, her wekî te nehêla alaya destê Pêşewa li erdê bimîne. Lewma niha jî rêvîngên rêya te, alaya xebat û cangoriyê ku remza hebûn û pênaseya gelê Kurd e, li her ciheke Kurdistanê bi bilindî radihejînin û mukûr in heta serkevtinê ew alaya bi rijdî pêlan bidet.

Ey rêber, min jî, ji hingê ve, ji wê demê ve, qewl û soz da ku heta hebim vê rêbaza ku te canê xwe li ser danî ye, bidomînim û bikime ronahiya rêya jiyan û xebatê û heta gihîştin bi miraza te û hemû şehîdan, nehêlim heyfa ve erdê bimîne, xatircem im ku riha mezine we jî her tim wekî sîberekê raserî serê me ye û çavnihêrê mizgîniya serkevtinê ye.

Belê rêber, hingê di wê roja pîroz de, tu jî tevî Şerefkendî yê heval û sozdarê heta serxwe û hemû şehîdên gorxerîb, karê xwe bikin û ji sefera xerîbiyê ve ber bi axa bab û kalan û êvirgeha Simkoyê nemir û Qaziyê Pêşewa vegerin. Hingê em jî evîndarên rêbaza te, vê ref bi ref û bi deste gulên sor ve, ber bi pêşwaziya we bihên û tevî dengê sirûd û marşa bi heybet ya Ey Şehîdan û çewandina bejna xwe li hemberî mezinahiya we, emê tabotên we hembêz bikin û bikine hewar û bêjîn: Hûn bi xêr bihên, mizgîniya serkevtinê li we ey şehîdên rêber, nemirî bo te ey Qasimloyê pêşeng.

Têbînî: Ev pexşane di rê û resma 14'mîn salvegera şehîd bûna Dr. Qasimloyê nemir de hate xwendin.





agiri

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 9, Jul 2004

Navnîşan:
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Email:
rojnama_agiri@yahoo.com

agiri2003@hotmail.com

Fax: 0012703425105

Bo Agirî binivîsînin

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:

- Destêwerdana rênûsa nivîsan biket.
- Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.

# Lidarxistina civîna girûpa karê Entirnasiyonala Sosyalîst bo doza Kurd li bajarê Diyarbekir



Di roja pêncşemî 25' Pûşpera sala 1383'e Rojî (00.07.2004) de, girûpa karê Enternasyonala Sosyalîst di pêwendî tevî doza Kurd de, li bajarê Diyarbekir, civînek lidarxist. Nûnerên Partiya Soyal Demokrat ya Swêdê, Partiya Sosyalîst ya Firanse, PDK Îranê û Partiya Demokratîk ya Gel (DEHAP) ji Kurdistana Turkiyê di vê civînê de pişikdar bûn. Bername demjimêr 10'ê sibêdê bi axaftina birêz Konî Firêdrîkson (ser bi Prtiya Sosyal Demokrat ya Swêdê) berpisyarê girûpa karê Enternasyonala Sosyalîst dest pê kir. Navbirî tevî sopas û destxweşî gotin bi Partiya Demokratîk ya Gel weke Partiya mêwandar û bixêr hatin kirina nûnerê Partiyên beşdar di vê civînê de, bernama karê girûpê bi vî awayî ragehand:

**Dom: R. 14**

# Qedexe kikrina weşana 2 rojnameyan li Îranê

Di rewşekê de ku dest pê bûna dadgeha doseya kuştina Zehra Kazimî, ku cewa siyasî û ewlehî ya Îrana di bin siya hikûmeta Îslamî ya îranê de xistibû bin bandora xwe, 2 rojnameyên ku dikarîn di aşkira kirina rastiyên wê doseyê alîkariyê bikin hatin qedexekirin. Ji ber ku bala xelkê û medyayên cîhanî û hundir bo girîngîdan bi doseya dadgehî kirina Zehra Kazimî kêmtir bikin û ji aliyê din jî ku medyayên din yên hundirî ji aşkira kirin û bas kirina rastiyên doseyê xwe biparêzin.

Rojnameya Weqayie Itifaqiyê bi sernivîskarî ya Bêhroz Giranpaye piştî weşana 76 hejmaran hate qedexe kirin. Seîd Murtezewî derheq girtina vê rojnameyê de dibêje ku rojnameya han ji aliyê desteya nivîskar û rêveberiya rojnameya qedebûyî ya "Yasê Nû" tê weşandin, ku ev kare dijî qanûnê ye.

Rojnameya din ku yekcarî ji weşanê hatiye qedexe kirin, Cimhuriyet e. Ev rojnameya ji aliyê Emadedîn Baqî, rojnamevanek ku bi sedema piştgîrî ji doseya kuştinên rêzokî, çend salan di girtîgehê de bû, weşan dikir. Cimhuriyetê 2 heftî bû ku weşana xwe dabû dest pê kirin.

Piştî rawestandin û qedexe kirina yekcarî ya 2 rojnameyên Weqayi





جمهوریت

حذف برابری ارث همسران از یکدیگر



Itifaqiye û Cimhuriyet û kovara Aftabê, civata berevanî kirin ji azadiya weşanan li Îranê roja duşemî (19 Julay) daxuyaniyek tund dijî kiryara Dezgeha Dadê ya Komara Îslamî de daxwaza betal kirina biryara qedexe kirina wan weşanane kir.

Hefteyekê berî niha jî kovara Aftab jî ji aliyê dadegehê hate qedexe kirin. Hêjayî gotinê ye ku Dezgeha Dadê ya Komara Îslamî aliyê kêm hikmê qedexe kirina 100 rojname û kovaran da.